Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 155
21'ê Adara 2011
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

**Ronkirina Sekretariyeta PDKÎ Ji bo raya giştî**

Em we hevwelatiyên birêz haydar dikin ku êwariya roja Yekşemî, 29'ê Reşemeya 1389 a Rojî, hevberî 20'ê Adara 2001'an, li rê û resma cejna newrozî û sersala 1390 a Rojî de, li binkeya Azadî a PDK Îranê de, bûyerek dilêş û xembar li dema birêbirina cejnê û hilkirina agir de qewimî û li encam da pêşmergeyek qehreman bi navê Mihemed selîmî, naskirî bi Mihemed Elyawayî şehîd bû û çend kesên din jî birîndar bûn. PDK Îran Sekretariya

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîn www.kurdistanmedia.com/kurdi



## NY pêpeskirina mafên mirov li Îranê mehkûm kir

Komîsyona Efûya Navnetewî ragihand rejîma Îranê îdama kasibkar û girtiyên siyasî, herweha tepeseriya neraziyan zêde kiriye.
Ban Kî Mon di warê birîna endamên leş û berdewamiya derkirina hukmê kevirbaranê ji bo mêr û jinên ku bi zinayê tên tometbarkirin, nîgeraniya xwe nîşan da. Ragihandina han zêde dike ku nûçegihan, weblagnivîs û parêzer tên destbiserkirin û îmkana domandina karê xwe tuninin.
Ban Kî Mon ji hikûmeta Îranê xwast ku îzna nûçegihanên saziya Navnetewî bide daku serdana Îranê bikin û rewşa han bibînin.

## Pêşmergeyekî PDK Îranê di bûyerek dilêş de şehîd bû



R:2

## Sekreterê Giştî ê PDK Îranê peyamek pîrozbahiyê bi boneya Cejna netewî a Newrozê pêşkêşî hevwelatiyan kir R: 2

# Ronahiya agir û sirûda rizgariya netewî



Bi boneya cejna netewî a newroz û hatina sersala nû a Rojî, êwariya roja Yekşemî, 29'ê Reşemeya 1389 a Rojî, rê û resmek li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê birêveçû. Rê û resm bi xwendina sirûda netewî a "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij ê şehîdên riya azadiyê dest pêkir.
Paşan birêz Mihemed Nezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî yê Partiyê, peyama Deftera Siyasî a hizbê bi vê boneyê pêşkêş kir ku têde tevî pîrozbahîkirina sala nû ji beşdarbûyan û hemû xelkê Kurdistanê, newroz bi nîşana berdewamiya serhildana rizgarîxwazaneya netewa kurd û hêvîbexş a serketina hilkirina agirê newroza sala 1390 a rojî ji aliyê birêz Mihemed nezîf Qadirî ve bû. Deqa peyama Deftera Siyasî a Partiyê li rûpela 3 ya Agirî de



### Hevpeyvînek taybet li gel birêz Mistefa Hicrî...

Mistefa Hicrî

Piştî hiloşîn û jihevbelavbûna partiyên çep û sosiyalistî ên Ewropayê di dehsala heftan de û.. R: 4



### Adar; hin ders û erk

Ebdulla Hicab

Li Kurdistanê bi hatina Adarê re bi tenê xweza ji xewa zivistanê şiyar nabe. Bi vejîna jîngehê re ku jêdera jiyanê ye, civaka Kurdistanê jî jiyanek nû distîne. Îsal jî Adar... R: 7



### Rojên Cejnê bûne kabosek bo Komara Îslamî

Ceifer Mubeşirniya

Tu takek ji civaka gelên Îranê nine ku di qonaxa seretayî a qutabxaneyên Îranê de helbesta R: 8



### Pêvajoya muzîka jêrzemînî di Îranê de...

Dara Natiq

Îtiyad çi wek tawan û çi wek nesaxî hertim bala fîlmsazan û alîgirên sînemayê bo aliyê xwe rakişandiye. Helbet ya ku li bîr... R: 10

# Peyama newrozî a Sekreterê Giştî yê PDKÎ

**Hevwelatiyên xebatkar!**

Newroz, destpêka sala nû a Rojî ji we ên xweştevî, bi taybetî malbatên serbilind ên şehîdên riya azadiya welatê me û girtiyên siyasî pîroz be.

Bi dawîhatina sala 1389' a Rojî, salek din a pirr ji zext û givaş, tepeserî, giranî, hejarî û berxwedana qehremanane a sercem xelkê nîştinamperwer bi taybetî ciwanên Kurdistanê, bidawî hat û bi newroz û destpêka sala 1390'a Rojî rûpelek nû ji xebat û berxwedanî bo biçokdeanîna rejîma serberedayî a Komara Îslamî di rewşekê de destpê dike ku encama hêvîbexş a pêlên bihêz ên xebata xelkê bêzarbûyî yê beşek berbiçav ji welatên Afrîqa û Rojhilata Navîn dijî desthilatên serberedayî û çimisanker û dam û dezgehên pirrçek û di rûyekî de bihêz, roxandin û paşdekişandina wan, di heman dem de damawî û bêçaremana rejîma Komara Îslamî, şiyan û hêzek nû dide hemû xebatkarên welatê me û asoya me berbi pêşerojek geş berbi rû dike.

Em bi vê hêviyê ve newroza xwe a nû cejn digrin ku bi xebat û berxwedana berdewam û yekgirtîtir a hemû aliyekê, deriyek nû berbi nemana desthilata serberedayî û serkevtina yekcarî a gel di sala 1390'ê de bidest bixin.

**Newroz û sala we ya nû geş û pirr ji şadî be**
**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**



## Sergotar

### Erkên giran û hêviyên geş

**Selîm Zencîrî**

Em li demekê de xatirê xwe ji sala 1389 a rojî, anku 2710 a kurdî dixwazin ku tûrikê me pir e ji bîranînên nexweş û tal, dilê me jî pir e ji hesret, birînên xedar û bi êş û azar û li heman hal de bi hêvî û geşdar. Dîsan rejîma Îranê şibî gurê har kellb û didanên xwe ên tûj û bixwîn nîşanî xelkê Îranê dan û bi gef û gur û êrîşan ve, sal qedand û siya reş û barana zulm û hovêtiya xwe jî li ser asîmanê welat domand. Ya ku ji dest hat, ji bibpêkirina berfireh a mafên mirovan bigre heya girtin, çavsorî, kuştin, îşkence, îdam û afirandina atmosferek ewlehî a pir ji tirs û xof bi taybet li deverên etnîkî de, encam da û hewil da bi yekdestkirina desthilatê û dûrxistina nizîktirîn kesên xwe, refên dijberî û serkutkarane ên xwe ji caran qahîmtir û yekgirtîtir bikin.

Lê berxwedan û xebata gelên Îranê jî li hember zalimên xûnxwar de bihêztir ji salan xwe nîşan da û dengê nerazîbûn û hawara mafxwazî û azadîxwaziya wan li cîhanê de deng veda û bi derketine meydan û biwêriya xwe nehiştin ku derbên girantir ji cismê nîştiman bixin. Azadîxwazên Îranê bi birine jêr pirsiyara hikûmetê, qad û girovera manordan û serkuta rejîmê tengtir kirin û bi beşdariya ektîv û çalakane a xwe li bone û hincetên cur bi cur de çendîn caran stûn û payeyên rejîmê hejandin û sîstema Wilayeta Feqîh ber bi serjordayiyek rik û tîj pal dan.

Xincî nemana rewatî û meşrûiyeta rejîmê li bal xelkê û gelên Îranê, li asta navnetewî de jî sala borî sala zelîlî û riswayî û şermezariya zêdetir a rejîmê li dor siyasetên ajawegêrane û hovane ên wê bû û li gelek kom û komele û rêxistinên navnetewî ên siyasî û mafên mirov de bi tundî hat mehkûmkirin û ji gelek hêlan ve hat dorpêçkirin.

Em li demekê de pêşwaziya sala nû dikin ku bayê azadiyê li cîhanê û bi taybetî li Rojhilata Navîn de ketiye geriyanê û taw û lerz xistiye nav dilê hemû dîktatoran, êdî serdemê zimanê zorê bi ser çûye û kes yan hikûmetek nikare bi vê metodê dewam û qewam a xwe berdewam bike. Lê rejîm bêhay ji vana, dixwaze bo parastina desthilta nerewa a xwe penayê bo her şêwazekê bibe, her kesê/î li derveyî çarçoveya hişk û îdeolojiya berteng a xwe wek dujmin sîxor û muharibe dihesibîne û kenî û şadiyê li ser lêvên xelkê direvîne û kul û kovan û girî û tarîtiyê dike mêvanê dilê wan.

Bi liberçavgirtina rewşa rejîmê û guhertina hevkêşeyên siyasî û zivirîna bext ji dîktatoran, li sala nû de hêviyên geş dixuyin, lê li hember de jî erkên giran û dijwartir dikewin ser milê azadîxwazan û herwek heya niha bi xebat û berxwedana xwe stûnên rejîmê sist û lawaz kirine, niha şûnde jî serbarê berdewamiyê, bi enerjî û cesûriyek qahîmtir, û ruhek yekgirtîtir li hemû biyavan de li dijî koşka zulm û zordariya Komara Îslamî bisekinin û bi hiloşandina stûnên rejîmê, pêşiya pişkivîna gula demokrasî û azadiyê li Îranê de vekin.

## Peyama Deftera Siyasî a PDK Îranê bi boneya roja cîhaniya Jinan

Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, 8'ê Adarê roja cîhaniya jinan ji hemû jinên cîhan, Îran û Kurdistanê pîroz dike û serkevtina pêtir ji bo gihîştina wan bi mafên xwe ên rewa bihêvî dixwaze.

Bi hatina roja 8'ê Adarê, roja cîhaniya jinan, civaka navnetewî û jinên cîhanê, hemû kor û civatên mirovhez, hevalbendên azadî, demokrasî û dadpeweriyê, bi awayek berbiçav bi pêşwaziya vê roja dîrokî ve diçin û rêz ji xebata jinan û maf û destkevtên wan digrin û yad û bîranîna 8'ê Adara 1910'a Zayînî, roja binavkirina vê rojê di kongireya Sosyalîst Enternasyonal a jinan ku li welatê Danmarkê de hat lidarxistin, pîroz dikin û hawriyek ji bizava mafxwaziya jinan li seranserê cîhanê û xebat û berxwedana wan li hember zulm û zor û newekheviyê tê dayîn. Ji wê rojê ve heya niha bizava mafxwaziya jinan li seranserê cîhanê bi awayên cur bi cur li çarçoveya saziyên taybetî de dirêjî bi xebata mafxwazane û wekhevîxwazane a xwe daye.

Di dirêjiya wê bizava sivîl de, li welatên demokrat û pêşkevtî de ku civaka mirovî pêşketin bidest xistiye û li hemû waran de geşe kiriye, jinan qonaxa newekhevî û temisandinê derbas kirine û niha di bilindtirîn asta zanistî, siyasî, abûrî, civakî û ...de, gihîştine kopika serkevtin û bexteweriyê. Salane bo rêzgirtin ji destkevtên wan, dehan kor, civîn, semînar û kongiran di asta cîhanî de digrin û xelatên taybet bi çalakvanên jinan tên dayîn û weke beşek girîng a civakê xizmetek berbiçav bi civaka navnetewî dikin û bûne pêşrewên bizava azadîxwazî û dadperweriya cîhanê. Lê di cîhana paremayî û di bin sîbera rejîmên kevneparêz û dîktatorî de, jin jî weke hemû tex û qatên civakê, ji hemû mafên wan ên rewa hatine bêparkirin û derfeta pêşkevtin û gihîştina bi jiyana dilxwaze xwe bi wan nahê dayîn û di çarçoveya yasayên paremayî û boçûn û kultora kevneparêzane de, riftar bi wan re tê kirin. Di wan welatên berteng û daxistî de ku kevneparêzî û yasayên bênayî perr û baskên xwe bi ser de kêşane, jin weke mirov nahê nihêrtin û li ser çarenivîsa xwe de biryarder ninin.

Welatê Îranê ku yek ji şaristaniyetên kevnar ên Rojhilata Navîn û xwedî dîrokek kevn û bajêrvanî ye, mixabin pêtir ji 3 dehsalan e tûşî rejîmek kevneparêz û dijî mirovahiyê bûye, jinên Îranê ku di jêhatî û çelengiyê de xwedî pitansiyelek zaf û di hemû waran de bi nav û deng in, di bin tesîra vê rejîma paremayî û yasaya bingehîn a kevneparêzane de, ji karwanê pêşketinê pare mane û ji bo gihîştin bi mafên xwe ku di carnameya gerdûnî a mafên mirov de pêdagirî li ser hatiye kirin, astengên zaf ji bo wan pêkanîne û niha jî bi awayeke dûr ji buhayên mirovahiyê riftar li gel wan tê kirin û deste deste bi sedema rikeberî li gel siyasetên dijî mirovî ên rejîmê tên hepsîkirin û dikevin ber azar û îşkence û tên îdamkirin.

Di dirêjiya wê siyaseta kevneparêzane de, jinên Kurdistanê jî ji wan şîwe riftarên kevneparêzane, ne tenê bêpar nebûne, belkî sitemek çendqat ji wan tê kirin. jinên Kurd li berdem sîstema Komara Îslamî de çend tawan li ser wan hatine nivîsandin. Yekem, azadîxwazî û wekhevîxwazî, duyem Kurdbûn û sêyem jî jinbûn. Lewma ew sitem û tepeseriya ku li ser hemû jinên Îranê birêvediçe, li ser jinên Kurd çendqat dibe.

Serbarê wê yekê jî jinên Îran û Kurdistanê di dema desthilata paremayî a rejîma Komara Îslamî a Îranê de li gel temisandin, newekhevî, siyaseta helawardin û ... berbirû bûne, lê di wê heyamê de jinên azadîxwaz û mafxwazên welatê me, bi rêkxistina bizavek sivîl û pêşkevtiyane li hember siyasetên rejîma kevneparêz a Komara Îslamî de berxwe dane û bi lidarxistina dehan kor û civîn û xwenîşandanan li hember wê rejîmê de helwest girtine û îradeya qahîm a xwe nîşan dane.

Di vê bizava şoreşvanî de jî, jinên Kurd him di çeperên berevanîkirin ji mafên netewî ên gelê Kurd û him ji mafên civakî û sivîl, pêşrewên vê bizavê bûne û erkê dîrokî yên xwe, serbilindane birêve birine û niha jî beşek çalak in di bizava netewî demokratîk a xelkê Kurdistanê de. Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, bi girîngîdan bi bizava mafxwazane ya jinan û rizgarbûna wan ji temisandin û newekheviyê, piştevaniyê dike û ji xebat û tekoşîna jinên azadîxwaz bo gihîştin bi mafên rewa ên wan û dabînbûna jiyanek bextewerane, pêşerojek geş ji bo wan bi hêvî dixwaze.

Pîroz be 8'ê Adarê, roja cîhanî a jinan

Serkeve bizava mafxwazî a jinan bo gihîştin bi mafên rewa ên xwe

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**16'ê Reşemeya 1389'a Rojî**
**7'ê Adara 2011'an**

## Pêşmergeyekî PDK Îranê di bûyerek dilêş de şehîd bû

ji ber barê aborî û kêmdahatiyê, kariye heya pola 5 a destpêkî dirêjî bi xwendina xwe bide. Xale Heme piştî hiloşîna rejîma paşatî û serketina şoreşa gelên Îranê li sala 1979'ê de, hate nav refên şoreşvanên PDK Îranê û li qonaxên cur bi cur yên xebat û tekoşîna dilsojane a xwe de bi jêhatî kar û erkên hizbî ên xwe bi cî digihandin. Xale Heme li devera Selas Bawecanî, Cuwanro û herweha li hêza Şaho, Komîteya Pawe, Hêza Samrend û beşên teqemenî û civakî ên PDK Îranê de bi dilsojî ve karên xwe dimeşandin û weke dawîn erkê hizbî li hêza Parêzgarî d karê xwe kiriye. Navhatî li Komîteya Pawe û melbenda 3 a Partiyê de erkên nîzamî pê hatine spartin.

Xale Heme wekî Pêşmergeyek xwedî ezmûn û şoreşvanek lêhatî li hemû dem û gavan de bo birêvebirina erkên hizbî amadeyî her terze cangorîtiyekê bû û li sala 1372 a Rojî de li dema qumparebaran kirina binkeyên hizba demokrat ji aliyê rejîma Komara Îslamî ve birîndar bibû.

Mixabinxale Heme, êwariya newroza 1390 a Rojî ji ber bûyerek dilêş şehîd bû û termê pîroze wî li nav xem û kovana hevçeperên wî de bi beşdariya endamên Deftera Siyasî, rêberî û kadr û pêşmergên partiyê li goristana şehîdên partiyê de teslîmî axê hat kirin.

Roja şûndatir, anku li 21'ê Adarê de rê û resma tazî û sersaxiyê li yek ji binkeyên ser bi Deftera Siyasî a partiyê ve birêve çû. Partiya Demokrat a kurdistana Îranê sersaxiyê ji malbata şoreşgêr xale Heme Eliyawayî dike û hêvîxwaze dawîn xema malbata wî û partiyê be. **Ruha wî şad û riya wî pirr rêvîng**

# Peyama Newrozî a Deftera Siyasî a PDK Îranê

**Hevwelatiyên birêz!**
**Xelkê mafxwaz ên Kurdistanê!**
**Beşdarên hêja**

Ez Ji aliyê Deftera Siyasî a PDK Îranê ve bona pişikdariya we li cejna Newroz û sersala nû a 1390 a Rojî (2711 a Kurdî)de ji dil bixêrhatina we dikim û sala nû û newroza îsal ji xelkê azadîxwaz ên kurdistanê, gelên Îranê, malbatên serbilind ên şehîdan, girtiyên siyasî û hemû hogir û evîndarên vê cejna dîrokî û netewî pîroz dikim û hêvîxwazim ku sala nû bo me tevan salek pir ji xêr û xweşî û deskevtên siyasî û netewî be.

**Xûşk û birayên xweştivî!**

Dawîn girûpên leşkirî yên sirr, seqem û kirêveya zivistanê, li hember şemala pêşengê xakelêwê de beziyan û Buhar tevî şehyana hênikeba û semaya nermebayan xistin hembêza Sirûştê. Kulîlk, baran û giya mizgîniya hatina demsala cuwanî û vejiyanê anîn û rûniştiyên vê parzemînê, alaya agir û ronahiya bo roja nû û sala nû bi hêviyên xwe re bi nîşange digrin û diçeqînin. Li kurdistanê de qîz û xort, pîr û law li pêşwaziya destpêkek nû ji bo kar û xebatê, newroz, remz û sembola netewî dikin nîşana ''berxwedan heya serketinê''ji şoreşa Kaweyê Asingir li dijî Zuhakê stemkar û bi sirûda serhildanê li dijî her terze zulm, pêpeskirina maf û azadiyên xwe serî hildidin û ronahiya agir û stranên rizgariya netewî, nîştiman hembêz dikin û mizgîniya serketina xebatê ji bo me bi diyarî tînin.

**Beşdarbûyên hêja!**

Îro ku li vê munasibeta dîrokî de em li hev civiyane, tevî xatirxwastin ji sala borî, pêşwaziyê ji sala nû a rojî dikin û bi hawrîdanek kurt ji panoramaya siyasî a Îranê li sala çûyî de em digihîjin vê encamê ku sîstema komara Îslamî a Îranê zêdetir tûşî kirîz û jidestdana rewatî û hitbarê bûye û sedema wê jî bo van xalên jêrîn û gelek xalên din vedigere:

- Kêşe û rikeberiyên navxweyî ên pawanxwazan, bi taybetî meclis û dewletê kûrtir ji berê bûne û li midehê yek sala derbasbûyî de hitbar ji çend wezîr, şêvirmend û berpirsên payebilind yên rejîmê hatiye standin û ji kar hatine avêtin. Ji serkaravêtina Wezîrê Karê Derve bi dûr ji hemû yasa û pirensîpên siyasî û dîplomatîk û guhertina serokê meclîsa Xubrigan a rêberî, ji mînakên vê rastiyê ne.
- Desttêwerdana Spaha pasdaran li kar û barên navxweyî û qorixkirina desthilta siyasî, aborî û îdarî a welat û bêdesthilat kirina organên rejîmê, beşek din ji vê kirîzê ye.
- Çekdarkirin û besîckirina xelkê bi awayek berfireh li sala derbasbûyî de yek ji hewlên din ên rejîmê bû. Armanc ji vê siyasetê jî tepeserkirina tevgera millî- demokratîk a xelkê kurdistanê, tevgera seranserî û fetisandina dengê dijberên rejîmê ye.
- Mijarek din ya germ ku li sala borî de xelik bi xwe ve mijûl kiribû û niha jî didome, meseleya rakirina yaraneyan e ku li destpêka qunaxaa yekem de nirxa alav û hewcehiyan çend qat zêde kir û weke pirsgirêkek bingehîn berçêla xelkê hejar û kêmdahat girtiye.
- Rejîm li hember opozîsyon û rexnegirên xwe de gelek bêrehmane ketine canê xelkê û bi sedan kes ji şoreşvanên riya azadiyê zîndanî kirin û bi awayek hovane xistine bin azar, îşkence û ji aliyê mirovkujên rejîmê ve keramet û kesatiya wan hatiye pêpeskirin, bi sedan kes ji wan hatine îdamkirin û li hemberî wan hemû tawanan de jî rêberê Komara Îslamî tenê siyaseta pakane û pasaw hînan û piştewanî ji birêveberên van cînayetan kiriye. Her ev mesele ye ku dilê her mirovek azadîxwaz û netirs dihejîne û helwestê li hember wan de digire û li ser bingeha vê siyaseta serkutkarane a xelkê azadîxwaz ên Îranê, deste deste dikevin ser şeqaman û bi xwenîşandanên berfireh û dana durûşmên ''mirin ji bo dîktator'' û ''bihiloşe rejîm'' li hember wan de serî hildane û roj li pey rojê zêdetir qada xebat û berxwedana xwe bi rejîmê re berfirehtir dikin.

Ev xwenîşandanane ku armanca wan hiloşandina rejîma Komara Îslamî ye, perde li ser vê siyasetê radike ku dixwazin bi domandina siyaseta reform û bi nav guhertinxwazî li çarçoveya vê sîstema hişk û berteng de riya tevgera azadîxwaziya xelkê Îranê berxwar û carek din tex û qatên civaka Îranê hevrîşê Komara Îslamiyek din û dîktatoriyek din bikin. PDK Îranê li destpêka vê nerazîbûnê, nêrîn û helwesta siyasî a xwe ragihandiye û îşare bi vê hindê kiriye ku tevgerek dikare armancên civatên xelkê misoger bike ku xwediyê rêberiyek demokrat û lêbraw be, û pêrewî ji bernameyek siyasî ku rengvedana armancên gelên Îranê û berevanîkirin ji misogerkirina demokrasî û avakirina sîstemek demokratîk be ku hemû pêkhateyên Îranê ji xwe bigre. Ceribîn û ezmûnên salên borî vê yekê nîşan didin ku her terze bizav û livek bi armanca guhertinên rûyekî li pêkhateya rejîmê de bêencam mane û siyaseta rêberên tevgera kesk nikare deskevtekê ji bo xelkê Îranê û tevgera demokrasîxwaziya Îranê bidest bixe. Bona selmandina vê rastiyê jî em dikarin îşare bi xwenîşandanên roja 25'ê Rêbendana 1389 a Rojî (14'ê şibata 2011) li Tehran û bajarên din yên Îranê bi merema piştevanîkirin ji serhildan û serketina xelkê Tûnis û Misrê li xebata dijî rejîmên dîktatorî yên wan welatan bikin ku



xwenîşanderan li şeqaman de bi qîrandina durûşmên ''Mirin ji bo dîktator'' û '' sernixûn be rejîma Komara Îslamî'' peyama siyasî a xwe dan eyanê û nîşan dan ku xwaziyarê sernixûniya rejîma Komara Îslamî ne û ji bo bidestxistina azadiyê jî amadeyî her terze cangorîtiyekê ne. Şehîdbûna Sani' Jale û Muhemed Muxtarî, du xebatkarên riya azadiyê jî nirx û buhaya vê helwesta şoreşvanî a wan bû. Hewce ye li vê cejna netewî de ku nîşan û sembola berxwedan û xebata wan bi dîktatoriyê ye, silavan bişînin bo canê paqije wan û carek din li gel malbatên serbilind ên wan hevderdî û sersaxiyê bikin.

Rejîma Komara Îslamî xincî vê rewşa navxweyî, li asta deverî de jî li doma siyasetên maytêkirin li kar û barên welatan û azirandina aliyên tundrew yên erebî û deverî, bûye astengek mezin li hember aştî û bihevre jiyana gelên Rojhilata Navîn û bi tayebtî piroseya aştiya Felestîn û Îsraîlê.

Li asta navnetewî de jî bi pêdagirîkirin li ser mehandina uraniyom û gihîştina bi çeka navikî, bersivnedana bi kor û komelên navnetewî û Civata Ewlekar a rêxistina NY, pitir ji caran ketiye bin zext û givaşan. Hewlên dîplomatîk yên DYA'ê bona sepandina tehrîm û dorpêçan bo ser rejîmê û pêkanîna hevdengiyê li Civata Ewlekar û pesendkirina biryarnameya 1929, pêpeskirina mafên mirov, pêrewînekirin ji peymannameyên cîhanî yên berevanîkirin ji behayên mirovî û mehkûmkirina rejîmê ji aliyê navendên navnetewî ve bûye sedema lawaziya pêgeha rejîmê li asta cîhanî û qada siyaseta navnetewî de. Her ji ber vê ye ku li salên borî de hejmarek ji dîplomatên rejîmê li nûneratiyên derveyî welat, ji rêza rejîmê dev ji rejîmê berdane û hatine nav tevgera azadîxwaziya Îranê.

**Xelkê xebatkar ên Kurdistanê!**

Sala borî we bi meşandina siyaset û helwestên jêhatî û netewî û beşdarîkirin li mangirtinên medenî li hilkeft û boneyên cur bi cur de, we asta bilind a şiûr û têgihîştina siyasî a gelê kurd nîşan da û bi tayebt pêşwaziya we ji roja 23'ê Gulanê, li ser daxwaza hêzên siyasî li dor mehkûmkirina rejîma Komara Îslamî a Îranê, ji îdamkirina 5 şoreşvanên riya azadiyê, nîşan da ku gelê kurd yekgirtî ye û kurdistan jî herwusa çepera azadiyê ye.

Bi nirxandina rewşa siyasî a Îranê û berçavgirtina vê nêrînê ku li çarçoveya rejîmê de maf û azadiyên xelkê Îranê misoger nabin, li sala nû de jî erkê niştimanî û netewî vê yekê ji me dixwaze ku ektîv û çalaktir ji berê, xebat û tekoşîna xwe berfirehtir bikin û bi mifahstandin ji hemû şêwazên xebatê ku li xizmet geşandin û xurtkirina xebata sivîl û xelkî a me de ye , hewil bidin ku bi hişyarî ve ber bi bûyer û guhertinên siyasî ve biçin û xwe ji bo her erkek siyasî amade bikin.

Li destpêka sala nû de bi piştewanîkirin ji ji Kempîna berevanîkirin ji girtiyên siyasî yên gelên Îranê, bi nîşaneya rêzgirtin ji xebat û berxwedan û helwesta jêhat a siyasî awan, bi dîdar û serdankirin ji wan xortên fîdkar ên riya azadiyê û herweha serdankirina malbatên serbilind ên şehîdan û girtiyên siyasî, erkên siyasî û netewî ên xwe bicî bigehînin.

**Hevwelatiyên xweştivî!**

Pêlên guhertinên siyasî û serketina tevgerên siyasî û sivîl li Rojhilata navîn û gihîştina gelê Başûrê Sûdanê bi mafê diyarîkirina çarenivîsê, li piroseyek siyasî û referandomek demokratîk de, vê rastiyê diselimîne ger ku neteweyek li xebata bo destveanîna mafên xwe berxwe bide û li ser de pêdagir be, serketina wê hetmî ye. Gelê kurd jî li xebat û gorîdana dijî dîktatorî û kevneperestiyê de dîrokek ronahî û pir ji şanazî heye, li serketina wê de tu gumanek nine. PDK Îranê jî ku pijyayî û patiyê qada xebat û berxwedanê û pêşîne û dîrokek ronak li dijî dîktatorî û serberredatiyê de heye, bi pişt qahîmkirin bi civatên xelkê Kurdistanê li vê xebatê de heta gihîştin bi armancên bilind yên gelê kurd dê berdewam be.

**Newroza we pîroz**
**Her li nav xweşî û şadiyan de bijîn**

## Got û bêj û hewildan di pêxem hevgirtinek jêhatî de

# Hevpeyvîn bi birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDKÎ

**Hevpeyvîn: Sîros Melekûtî**

**Beşa 1**

Piştî hiloşîn û jihevbelavbûna partiyên çep û sosiyalistî ên Ewropayê di dehsala heftan de û hatinegorê a şêwazên nû ên darêtina pêkhate û rêxistinên nû ên teşkîlatî-siyasî û herwusa awayên dirkandina cudaye daxwazên siyasî û civakî, partiyên siyasî ên welatên weke Turkiye, Îraq, Amerîkaya Latîn û zaf aliyên din di navbera dehikekê de ji hev belav bûn.

Ewa ku hiloşandinên han berhema neçariyekê bûn ku nîşana dijberiya bernameyên wan partiyan tevî datayên dîrokî bûn yan bi hegera tepeserkirinê ve qewmîn, renge hewcehî bi basek taybet hebe. Lê tu yek ji partiyên hiloşayî û nemaze kerbûyî nekarîn di rewş û zirûfa akincîbûna derveyî welat xwe nûjen bikin û pişikdariya siyasî a xwe di guhartinên civakî di pêvajoya bûyeran de bi kiryar derbixin.

Partiyên weke Tûde, Fedayan, Peykar, Riya Kirêkar, Nemaze Cebheya Milî û zaf partiyên din û... tev ew partiyane bi nav û awayên cuda yên xwe dixebitin yan renge bi hegera kesên mîratgir ên xwe ve, rola xwe dilîzin. Lê pênaçe ku di pêvajoya çalakî yan berdewamiya xwe de, serkevtinek hewce di pêvajoya rêxistina xebatê de bidest xistibin. Berhema vê pêvajoyê renge bûn yan nebûna altirnatîvek e bo tevgerek ku di pêşiya me de ye û nebûna eniyekê be di daxwazên bizava dij bi wilayet ku bas ji destêwerdana siyasî weke parsengek civakî dikin. Bi awayek ji awayan renge asta derbên hindur û dîrokî li hegerên tepeserkirinê di wî warî de zêdetir bi bandor bûn û ji hevbelavbûn û herifîna hindur a wan partiyan weke hewce encama tepeserkirinê nebe an aliyê kêm tepeserkirin tenê yek ji hegerên diyarîkirî be û ne zêdetir.

Pirraniya wan cure partiyan îro bêy ku di warê abjektîv a xebat û rêkxistina xebatê de pişikdar bin di warê sobjektîv ve xebat xistine bin bandora bê nav û nîşan a xwe, ku wusan bû mirov ne dikare haşayê jê bike û ne dikare lihember bûyeran de wan bi şahidt bînin. Dixwazim di destpêkê de pirsiyara xwe a yekim ji rêberên wan partiyan û bo wergirtina bersiva berdewamî û hiloşîna partiyên wan terxan bikim. Ka em mêze bikin ew bi xwe çawan difikirin û li gor têgihîştinên xwe yên îro çi şiroveyek nû bo xwe hene û çavan xwe şirove dikin? Li gor vê pirsê em dixwazin bizanin ew çawan pişikdariya xwe di jiyana civakî a axa me ya hevpar de pênase dikin. Di navbera hizrîn û çelengiyên qada siyaseta îro de, du dîtingehên cuda hene, nêrînek ku hebûna partiyên siyasî ên berê napejirînin û wan di afrandina altirnatîvên xwe de berçav nagrin û her di afrandina altirnatîvên xwe de çavê wan ji takperestî bo pêkhateyekî nû û hêjayî sîstemê ye. Piştre hêzek din a hizrî ku rû ji tev wan partiyan e ku tevî hemû cur bi curiyên pişikdariya wan, daxwaza eniyek hevgirtî a siyasî dikin. Di wan du nêrînan de, me hewcehî bi zaniyariyan li ser naskirina hindur û çawaniya ji dayîkbûna wan partiyan heye.

<u>Ev mijare bi awayê yek li dîv yek dikeve ber destê malpera “Exbarê Rûz” û piştre tewahiya gotara han weke pirtûk tê çapkirin</u>.

Lê di nava wan partiyan de, nimûneyek berdewam jî dixuye ku kariye zêdetir ji 60 salan hebûna xwe serbarê tev asteng û girêpêçkên qada siyasî yên Îranê û bi taybet Kurdistanê, bi zelalî nîşan bide an ku PDKÎ. Cihê baldanê ye ku em bizanin xelk û nifşa nû û rewşenbîrên Kurd serbarê wan gilî û gazindên ku ji partiyên siyasî ên xwe digrin, pêwendiyek kûr tevî wan hene, partiyên Kurdistanî niha jî rêkxerên xebatê di Kurdistanê de ne û rêkxistinên han di hin mînakan de karî bi eşkerekirina hevpêwendiyên giştî bo tev çavdêran cihê heyirî manê be. Li gor nêrîna min êdî mirov nikare partiyên Kurdistanî weke partiyên qewmî berçav bigre û li derweyî gotara siyasî a sertaserî de mêze bike. Pişikdariya wan partiyan û pirogiramên wan nîşana daxwaza guhartinan di siyaseta giştî û herêmî de ye.

Di peyv û got û bêja yekim de, em dixwazin bizanin ku ev berdewamiya berhema gotara bîrteng û nostalojiye yan encama tekoşîna navxweyî ye? Em dixwazin bizanin ku ew xwe çawan mêzeyî wan hegeran dikin. Bersivdan bi vê pirsa destpêkî renge bo xwendevan dirêj bixuye, lê hewce ye ku ji zarê rayedar û rêkxerên wan partiyan ve em bersiv û şirovekirina wan hegeran bizanin û piştre bikarin vê gotarê di qadek giştî de şirove bikin. Eva jêr pirsa min a yekim e ji rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê giştî yê PDK Îranê.

**Rêzdar Mistefa Hicrî, hûn Sekreterê yek ji mezintirîn partiyên Kurdistan û Îranê ne. Partiyek ku pêtir ji 60 sal e xebatê dike û niha jî berdewam e û ji hêla xelkê Kurdistanê û partî û kesayetiyên siyasî ên Îran û cîhanê ve piştgîrî jê tê kirin û rêz jê tê girtin. Her di vî heyamê derbasbûyî de em şahidê hiloşîna zaf partî û rêxistinên siyasî di asta Îran û cîhanê de bûn. Li gor çi hegerekê ve jêwe ye ku PDKÎ kariye xebata xwe bi awayek mokim heya îro bimeşîne?**

Mistefa Hicrî: Di bersiva vê pirsê de mirov dikare îşarê bi hin sedeman bike, lê ezê hewil bidim weke nimûne îşare bi çend sedemên bingehîn ku di berdewamî û pêşkevtina partiyê de rola berçav hebûne bikim;

A: Daxwazên partiyê rengvedana rastîn a daxwazên civaka xelkê Kurdistanê bûye. Jordeçûna hişyariya netewa Kurd bi dirêjahiya sedsala derbasbûyî, ev gihandine vê encama bikiriyar ku zilma civakî, abûrî, kultûrî, olî û ... ku ji aliyê hikûmetên dîktator ve bo wî xelkê biheq zanîn e û dizanin, rîşala vê di nebûna mafê diyarîkirina qedera xwe û nebûna demokrasiyê de ye, li gor vê çendê bo rizgarbûn ji destê wan hemû zilm û bêdadiyê diviya xebat bo dabînkirina wê mafê, stratêjiyek li serveyî xwastên wan ên din cih bigirtiba. PDKÎ di sala 1945' a Zayînî de li ser bingeh û îrade û daxwazên gelê Kurd ava bû.

Di navbera berhevdan û nêrînên cuda (bo mafê diyarîkirina qedera xwe) PDK Îranê her di destpêka avabûna xwe de “Xudmoxtariya Kurdistanê” di nava Îranê de bi hin sedemên dîrokî, kultûrî û ... weke rêçareya herî hêja a vî mafî diyarî kir û kire rêrewa daxwazên xwe û tenê çend heyvan piştî pêkhatina partiyê, rêberên jêhatiye partiyê û berî hemûyan jî Qazî Mihemed bi mifahwergirtin ji walahiya desthilatê bi sedema şerê duyem yê cîhanî û hebûna hêzên biyanî, hikûmeta xudmoxtar a Kurdistanê bi bajarê Mehabadê de ragihand. Temenê wê Komarê kêmtir ji salekê bû, lê her di wê heyama kurt de Partiya Demokrat bi awayek micid bo dabînkirina daxwazên berheqe xelkê, di wê Komarê de hewil dida. Demokrasî, azadiyên takekesî û civak, azadiya jinan, azadiya hizirînê, hikûmeta yasa û bi giştî demokrasî û azadî bi wateya berfireh a wê ji destkevtên buhagir ên Komara Kurdistanê bûn û bi vê çendê jî ew newekhevî, zulm û sivikatiyên ku bi dirêjahiya çend dehikan derheq bi xelkê birêve diçû, di heyamê wan çend mehan de nemabûn û bo cara yekimîn, xelkê seh bi serbilindî û tenahiyê dikir.

Bi kurtî bi kiriyarkirina daxwazên xelkê ji aliyê Partiya Demokrat ve, ji aliyekê ve nîşana pêşengbûna partiyê ji hilbijartina daxwazên wê bû ku tiştek cuda ji xwastên xelkê nebûn û ji aliyekê din ve nîşana merempakiya Partiyê ji bikiryarîkirina wan daxwazan di yekimîn derfetê de bû. Ev bûyerane di bîrokeya dîroka xelkê Kurd de ne tenê di Kurdistana Îranê de belkî di tev parçeyên Kurdistanê de nostalojiyayeke ku gihîştina ji nû ve wê bi tev buhayekê qebûl e û di vê pêxemê de em amadeyê her cure fidakariyekê ne. Partiya Demokrat di wê demê heya niha, alahilgirê rastîn û rastbêjî, dabînkirina wan mafên binpêkirî ên xelkê bûye û serbarê tev kompiloyên dujminên demokrasî û xwerêkxistin tevî zaf rewş û zirûfên dijwar, dîsan jî bi bawerî û pişrastbûn bi wî xelkî kariye xebata xwe di pêxema armancên xelkê de bidomîne.

1. Di berhevdanekê de, qedera wan partiyên ku di derbasbûyî de li ser bingeha rewş û zirûfa hesteyekî yan çînayetî û girûpî avabûn û pirranî jî li ser bingeha parastina berjewendiyên hêzên biyanî an girûpekî taybetî di civakê de sekinîne, şirove bikin û di vê pêxemê de jî, qedera wan girûpan jî ku heya niha ji Paritya Demokrat cuda bûne, ji vê rêsaya giştî de xwe dibînin.



B: parastina xweseriya Partiyê:

Xweseriya Partiyê di pênaseya Partiya Demokrat de bi wateya berçavgirtina helwest û taktîkek in ku di bernameya şolkirinê de ye ku berî her tiştekî tevî stratêjiya Partiyê ku pêkhatiye ji mafê diyarîkirina qedera xelkê Kurd di Kurdistana Îranê de dijberî nebe û piştre jî biryarên pêwendîdar bi darêtina siyasetên giştî nekevin bin bandora hezkirin yan kerb û kînê de û ew zirûfên bihest û kurtheyam ku zêdetir di nava me, xelkê Rojhilatê de bilez pêktê û bi wê lezitiyê jî bê naverok dibe û herwusan bi sedemên bandor ên nerênî ên hegerên derekî nehên xapandin.

Xuya ye ku Partiya Demokrat bi vê rewş û zirûfa dijwar û ew pirsgirêkên zaf ku pêre berbirû bûye û heye, bizehmet kariye xweseriya xwe biparêze û nemaze di qonaxên cur bi cur de nirxên giran jêre daye.

C: Rêber û Pêşmerge:

Bi dirêjahiya temenê Partiyê bi taybet di destpêka hatne serkar a Komara Îslamî a Îranê de ye ku Partiyê tekoşîna eşkere a xwe bi awayek fermî ragihand, jiyana endamên rêberiya Partiyê kêm û zor di yek ast de bûye. Di warê yarmetiya abûrî ve, cudahiyeke pirr kêm di navbera yarmetiyên endamên rêberî tevî Pêşmerge de heye. Pêka wan rêsayên ku di wî warî de hatine berçavgirtin, hin caran yarmetiya Pêşmergeyek û malbata wî ji yarmetiya endamekî Komîteya Navendî zêdetir e û ewa jî zêdetir di vê demê de ye ku Pêşmergeyek, hejmara endamên malbata wî ji hejmara malbata rêberiyê zêdetir be. Cihê jiyana endamên rêberiyê her ew cihe e ku Pêşmerge û Kadrên Partiyê li wir dijîn. Vê pêkê, di bombebaranan de, topbaranan de û ew derbên ku heya niha Komara Îslamî li cihê jiyana endamên Partiyê weşandiye, hemû bi awayekê wekhev ketine ber êrîş û xesaretê ve. Di qada şer tevî kirêgirtiyên rejîmê de, endamên rêberiyê bi Pêşmergan re bûn, her lewma hejmara endamên rêberiya Partiya Demokrat ku hatine şehîdkirin, tevî tu yek ji partiyên siyasî ên Îranê û herêmê nahên berhevdan. Sirr û seqem, germî, cihên aloze cuxrafiyayê ku zaf caran ji eşkewtan weke penahgeha çolê mifah hatiye

wergirtin, hemû bi qasî hev êşandin e.

Hêjayî gotinê ye ku pirraniya rêberên partiyên siyasî ên Îranê ku niha akinciyên Ewropa û bi giştî Rojavayê bûn û ji îmkanatên penaberiyê pişikdarin, lê di Partiya me de tenê du kes(Sekreter û cihgir Sekreter) pasporta Ewropayê hene ku ew jî tenê bo kar û raperandina kar û barê Partiyê mifahê jê werdigirin.

D: Hûrbînî bi wateya pêşengbûnê:

Yek ji taybetmendiyên Partiya siyasî helsengandina bûyer û rûdanên siyasî ye, ne tenê li dema qewmîna wan, belkî di paşerojê de jî. Pirsên rojeva siyasî ger di pencereya encamên wê yê paşerojê de nehên şirovkirin û tenê di çarçoveya dema qewmîna wan de bihên şirovekirin, renge helwest û berçavgirtina wan di dema bûyeran de hin qazancên kêm û kurtheyam bo wê partiyê hebe, lê di dirêjheyam de egera vê çendê heye ku zirer û ziyanekê zaf û bandorek xirab bo wê partiyê û wê civakê bi dîv re be. Ger di vê dîtingahê ve derbasbûya zêdetir ji 3'dehikan a partiya Demokratê şirove bikin, zaf xal dixuyin ku niha weke parek ji helwestên buhagiran û dîrokî a vê Partiyê tên hesibandin, bo mînak:1. Di destpêka desthilatdariya Komara Îslamî de ku seranserê welat tevî kelekel û seha serkevtinê mijûl bûn, xelkê Îran di referandomek şanoyî de, dengê xwe dan bi Komara Îslamî, rejîmek ku heya hengê di cîhanê de nehatibû naskirin, lê Partiya Demokrat piştî helsengandina hewce, biryara baykutkirina wê referandomê da. Argomênta wê demê a Partiyê ew bû ku bi referandomkirina "rejîma Paşayetî yan Komara Îslam", her dibe Komara Îslamî, jiber ku xelik, rejîma Paşayetî, herifandibûn û dengê xwe nedidane wê bijarê û rayedarên ku taze desthialt bidest ve xistibûn, amade nebûn heta "Komara Demokratîk" pêve zêde bikin. Ku wusan bû Partiya Demokrat gihîşte vê encamê ku hikûmetek han tu yek ji daxwazên xelkê ku li serweyî hemûyan azadî bû dabîn nake.

2- dema ku balyozxaneya Amerîkayê, di Tehranê de, ji aliyê girûpek bi navê Xwendekarên Misilman ve hat dagîrkirin û zaf aliyan rêz ji kiryarên wê komê girtin û ew han didan, Partiya Demokrat di daxuyaniya xwe de ew kiryarê şermezar kir û ragihand ku dagîrkirina balyozxaneya her welatekê bereva jî yasa û orfên navnetewî ye û dûkela wê diçe çavê xelkê Îranê.

Ragihandina ew helwestên siyasî di wan rojên destpêkê de, Partiya Demokrat xist ber şîpelên buxtan û tometên cur bi cur, ji çepên dijî Empiriyalîzm bigre heya ew misilmanên ku li serkevtina gihîştin bi selteneta olî serxwş bibûn, tewawiya wan partiya me bi paremayî û girêdayî bi Amerîkayê û ... bi nav dikir. Berhema ew helwestên siyasî ku di wê demê de berevajî daxwaza giştî bû, partiya Demokrat xiste perawêzê ve, cuda ji xelkê Kurdistanê ku dîsan jî hitibara mukim a xwe bi partiya xweştevî a xwe parastibûn.

Renge îro pirraniya xelkê û nemaze nifşa piştî şoreşê bihêsanî hay ji wan şaşiyan bibin, jiber ku sî û çend sal ceribandina rojane a rejîmek ku bi xwe anîne ser kar û ew xesar û zererên ku bi sedema dagîrkirina hêlîna sîxorî! Di cendekê Îranê de, xwe bi xwe de ew anîne ser wê baweriyê, encamek ku 30 sal berî niha Partiya Demokrat seh pê kiribû û ragihandibû û ewa jî bi wateya pêşengbûna partiyek siyasî ye.

W: Siyaseta Îtidal û nerimrewiyê:

Ger em siyaseta partiyên siyasî ên opozîsiyona Îranê di destpêka desthilatdariya rejîma Komara Îslamî ve şirove bikin, ji mere dixuye ku pirraniya wan hevrîşî xwerêkxistinek zîgzakî bûn û bi hegera necihgîrbûn li îdiolojiyan û zirûfa hindur a Îran û herêmê di qonaxên cuda de di bin bandora nerast û hestekî yan bi hegera pêşgirtina siyaseta popolîstî û hin caran çepgerane ve hin helwest girtine ku bi qazancê wan partiyan_aliyê kêm di dirêjheyam de_ û civakê nebûye, her lewma guhartina şêwaz û guhartinên zaf ên siyasî me ji aliyên wan kom û partiyan ve dîtine. Bîra me neçe ku guherîna siyasetê bi merema hevgirtin tevî rojeva siyasî bi vê mercê ye ku stratêjiyê tûşî xesarê neke, karek cihê pejirandin û hewce ye, lê dema ku stratêjî tevî helwest û siyasetên rojê hev negrin, ewa bo partiyek siyasî yan hikûmetekê malxirabkirin e. Partiya Demokrat her di destpêka helwestên siyasî ên xwe li ser bingeha bidestveanîna demokrasî û mafê netewî li forma xudmoxtarî di çarçoveya Îranê de xebata xwe meşand.

Siyaseta han a wê demê heya niha stratêjiya partiya me bûye û di tewahiya wî heyamî de bi berçavgirtina taktîkan di pêwendî tevî pirsên hundur ên Îran û derekî de, tu car ev stratêjiya han li berçav bizir nebûye.

Di salên destpêka Komara Îslamî ku parek berçev ya Kurdistanê di bin desthilata Pêşmergên Partiya Demokratê de bû û niha jî ku partiya me çalakiyên xwe ên çekdariyê sekinandine, dest bi çalakiyên teşkîlatî û pêwendî û ragihandinî kiriye, stratêjiyên partiyê nehatine guhertin û di doma vê riyê de, bi awayekê nermajo û bê rawestan xebata xwe di wî warî de domandiye. Dûr dîtina vê stratêjiyê û xebata nermajo a vê di pêxema dabînkirina vê, bûye sedema vê yekê ku di dema rêberîkirina xebata çekdarî di Kurdistanê de, li kiryarên weke rehîngirtin, teqekirin ji kesên sivîl û dameziravên giştî û xelkê xwe biparêzin, riftarên şaristanî tevî êxsîrên şer û berçavgirtina mafên wan ji wan kiryaran bû ku bûne sedema bidestveanîna hitbar û rastî bo xebata me li raya navnetewî û nemaze ji dîtingeha wan hepsiyên ku di dema şerê çekdarî de di girtîgehên partiyê de mane. Li pêşgirtina wan cure siyaset û kiryaran bûne sedema vê çendê ku Partiya Demokrat serbarê pêketina derbên giran û pîlanên zaf ên Komara Îslamî, ji terorên rêberan û ragihandina hiloşîna partiyê û bikaranîna riftarên herî tund tevî xebatkarên vê partiyê di hundur û derveyî welat de, dîsan jî di meydanê de bi awayê çeleng û bibandor bimîne û serbarê tev givaşên rejîmê, dîsan jî xelkê Kurd û zaf aliyên din piştevanên herî qahîm û bihêz ên partiyê bin.

**we di axaftina xwe de bas ji serhildana têgihîştinekê kir ku Komara Mehabadê karî bicih bîne. Temenê wê Komarê kêmtir ji salekê bû, lê her di wê heyamê kurt de partiya Demokrat cehd kir ku daxwazên xelkê ku xewn û xeyal bû, di wê Komarê de dabîn bibin. Erê gelo ew bûyerên dîrokî tevî hemû destkevtên civakî ku we bidirustî amaje pê kirin, nebûye sedema serhildana zehniyetekî cudaxwazî di vê pêwendiyê de? Ger zehniyeta han tûşî şiroveyek han bû, PDKÎ di wî heyamî de çavan tevî hizrek han berbirû bûye? Bêşik hûn dipejirînin ku bûyerek han karî di navbera Kurdên her çar parçên Kurdistanê de bingeha handerek bihêz a siyasî bo Kurdistanê darêje û hin aliyên siyasî jî rêrewa gotin yan negotina xwe her li ser vê baweriyê xistine berçav. Niha partiyek ku bi sedema hizrînek han di doma temenê siyasî a xwe de daxwazkarê curek ji pişikdariya xwe li cem demokrasî di Îranê de, divêt tevî tu hizrekê hevpêwend yan dije pêwendiyek hundur û derekî de berbirû bibe?**

Bersiv: her wê demê vere ku parek ji axa Kurdistanê di encama şerê Çaldiran (1514) û vajokirina rêkevtname a sala 1629'ê Zayînî, di navbera Şah Ebasê Sefewî û Soltan Muradê Osmanî û li dîv re piştî şerê cîhanî yê yekim û hiloşîna dewleta Osmanî, ew para Kurdistanê ku di bin desthilata Osmanî de bû, ji nû ve di navbera welatên Îraq û Sûriyê de hat parvekirin, xebata Kurdan bo rizgarkirina axa xwe ji nav lepên welatên zal bi ser Kurdistanê, di parên cuda cuda de hertim dirêjî hebûye. Tevgera Şêx Ubiydullahê Nehrêy di sala 1880'ê Zayînî de û rizgarkirina parek ji axa Kurdistanê (navbera gola Urmiyê heya wanê) ji aliyê navbirî ve, yek ji tekoşînên azadîxwazane ên Kurd bû bi merema rizgariya Kurdistanê. Ku wusan bû em dikarin bêjin ku hizra xwe cudakirin û cudayîxwazî û hevgirtina ser taze a beşên Parvebûyî ên Kurdistanê pêka tegihîştina me yê Kurd û herwusan serhildan û xebata zaf di pêxema bicihanîna vê hizrînê, berdewam di holê de bûn. Lê hêdî hêdî ku serhildan û xebatên nerênî berbi pêgihîştinê ve diçin, xebata gelê Kurd awayek moderntir bi xwe ve digre, rastiyên siyasî ên cîhanî û herêmî li ser bernameya karê xebat, armanc û awayên xebata xelkê zêdetir xwedîbandor bibin. Avakirina PDKÎ bi pirogiramek pêşkevtî û modern û heyamekî kurt piştî vê çendê pêkhatina Komara Kurdistanê û bernameyên pêşkevtî ên wê Komarê bi xalek girîng di wê pêvajoya dîrokî de tê hesibandin, bi vê wateyê ku guhartinên han bandora xwe li ser awayên xebatê di beşên din de dike, renge bi sedema vê bandora han be ku piştî derbasbûna salek bi ser temenê Partiya Demokratê de, Partiya Demokrat a Kurdistana Îraq bi vê dirûşma sereke –demokrasî bo Îraqê, Xudmoxtarî bo Kurdistanê- hat avakirin.

Helbet di destpêka wê qonaxa nû de heya niha jî hin hizr û nêrîn bi merema bidestxistina xweserî û yekparçigiya Kurdistanê di navbera hin kes û partiyên Kurdistanê de di beşên cuda ên wî welatî de, di holê de bûn, lê îro paradayma zal bidestxistina azadî û mafê siyasî ê Kurdan e di çarçoveya sîstema hikûmeta federal di wan welatan de ku parek ji Kurdistanê birêve dibin û di encam de xudmoxtarbûna Kurdan di çarçoveya wan welatan de.

PDKÎ bi girîngîdan bi demokrasiyê ku nebûna vê di Îranê de yek ji sedemên herî serekî ên tepeserkirin û zulmên ser xelkê Kurd û hevwelatiyên din bûye û bi baldan bi rastiyên siyasî ên cîhan û herêmê û karê berdewam û bê rawestan a siyasî û teşkîlatî di nava xelkê de bi dirêjahiya deyan sal xebat, kariye di pêxema geşekirina seha hevpêwendî de xwedî bandor be, bi awayek ku em dikarin bêjin di Kurdistana Îranê de tu partiyekê siyasî micid a serbixwexwaz tunin e.

Hizra serbixweyîxwazî a Kurdan, hizrekî nerênî û nepejirandiye, berevajî xweseriya Kurdan her wek tev ew netewên ku heya niha gihiştina xweseriya welatên xwe, mafê berheq a wan e û tepeserkirina wî mafî di bin her navekî de mehkûm e. Lê gotina me ev e ku di Kurdistana Îranê de – em dikarin bêjin di hemî parçên Kurdistanê de-xelk, zêdetir sîstema xudmoxtariyê dipejirînin.

**Partiya we çend dehikan bi silogana demokrasî bo Îranê û xudmoxtarî bo Kurdistanê xebata siyasî a xwe di Îranê de domand. Lê çend salek e silogana han bûye Îrana federal. Çima û li gor çi sedem û şiroveyên civakî-dîrokî ve silogana sereke a partiyê guherî? Herwusan di dirûşma berê de, we çava xwe biriya demokrasî bo Îranê, wate ewa li ser bingeha vê demokrasiyê bû ku dihat çavnihêrkirin ku bersivderê daxwazên xelkê Kurdistanê be. Erê we jêveye ku dirûşma Îrana federal weke hewce dikare weke gerantiyek bingehîn bersivderê daxwazên xelkê Îranê be?**

Bersiv: guhartina dirûşma sereke a Partiyê ji "demokrasî bo Îranê û xudmoxtarî bo Kurdistanê" bi "Îrana federal" encama helsengandina wan guhartinên civakî, siyasî û abûrî ên berfireh e ku di dema hilbijartina dirûşma berê, di kongereya sêhem a Partiyê (1352)ê Rojî, heya dema cihgirtin bi dirûşma "Îrana federal" ( Pûşpera 1383) a Rojî, wate di heyama pêtir ji 30' salî de di cîhan û Îranê û Kurdistanê de qewmîn.

Li dehsala çilan a Rojî de dabeşbûna cîhanê bi ser du herêmên Rojhilat û Roava de yan Sermayedarî û Komonîzm û dirêjîkêşana şerê Sar, bandora fikrî û siyasî a xwe li ser civatgeha cîhanê dana bû, jiber ku her yek ji wan herêman (Rojhilat bi rêberatiya Soviyeta Sosiyalîstî) û Rojavaya Sermayedar(bi rêberatiya Amerîkayê) di geşepêdana hizra zalxwazane û azadîxwazane a xwe de di welatên bin nifûza siyasî û hizrî a

xwe de – her yek ji dîtingeha xwe ve – zor çalak bûn. Rewş û zirûfa hizra wan rojan di navbera pirraniya rewşenbîrên Rojhilata Navîn û ji wan Îran û nemaze Kurdan û herwusan nêrîna çepên xapandî ji Partiya Tûde a Îranê de, bi wateya lidîv ketina bê vir û wirde a siyasetên Şorevî bû, jiber ku di wê nîşandanê de, nemana ew bêdadî û zulm çînayetiya netewî ên di sîstemên serberedayî ên weke Paşayetî li Îranê û sîstemên sermayedarî de hene, tenê di riya avakirina sosiyalîzmê çê dibe û şêwebexşîn bi forma xebatê bi merema gihîştin bi wê behişta sozdayî bandora xwe li ser hizr û nêrîna rewşenbîrên wê serdemê danî bû.

Rêkxistin û xebatgirên siyasî di Kurdistanê de jî netenê li kartêkirina wan lihevketinane bi dûr nebûn, belku ji aliyekê ve zulm û tepeserkirinên ku ji aliyê rejîma wê demê ve bi dijî xelkê misteheq dihate dîtin û ji aliyekê din ve jî xwedîderketina xudmoxtariyê di nava Yekitiya Soviyet ji aliyê netewên cur bi cur ên ku ew Yekitiye pêkanîbû, di hilbijartina dirûşma "Xudmoxtarî bo Kurdistan" bê bandor nebûn.

Xuya ye ku avakirina hikûmeta "Komara Xudmoxtar a Kurdistanê" di sala 1945' ê Zayînî de ji aliyê Partiya Demokrat, bi rêberatiya şehîd Pêşwa Qazî Mihemed ku kêmtir ji salek berdewam bû û piştre jî nostalojiya Kurdan bo hiviya avakirin a hikûmeta xudmoxtar jî di hilbijartina vê dirûşma sereke bo PDK, weke mîratgirên hikûmeta xudmoxtar a Kurdistanê, sedemek zêdetir bû. Her di wê demê de hilbijartina navê "Komara Xudmoxtar" bo hikûmeta hundur a Kurdan li sala 1945'ê Zayînî û hilbijartina dirûşma xudmoxtarî, ji aliyê PDK ve di salên paştir de û her wusan cihgirtina dirûşma han bi federalîzmê singê xwe di nav hogirî û hişyarane a vê partiyê û xelkê Kurdistanê ji bo bihevre jiyan ligel xelkê Îranê û parastina yekparçeyî a wî welatî de dakutaye, herçend ji wê demê ve heya niha xizmetkarên rejîma Paşayetî û Komara Îslamî, daxwaza xudmoxtarî û federalîzma Partiya Demokrat bi nîşanderê cudahîxwazî a vê partiyê dane zanîn û hejmarek ji çalakên siyasî ên Îranê jî bi zaniyarî yan jî di jêr bandor piropagendeya wan du rejîman, ew yek gotine.

Piştî bidawîhatina şerê Sar û bi bereketa pêwendiyên lez, leza guhartinên zanyarî û di encam de bilindbûna asta hişyariya bikom a xelkê û ji wan netewên akincî li Îranê, siyasetên navnetewî û deverî bi arasteyek nû de çûn. Herifîna hikûmeta îdiolojîk-serberedayiya Yekitiya Soviyetê û pêkhatina zaf hikûmetên xweser ên netewî li ser wêraniyên wê Empiratûriyê û guhartinên kûr ên kêm û zaf weke Yogislawi, nasyariya pêtir a netewên zulmlêkirî ên deverê bi binpêkirina mafên wan ji aliyê hikûmeta mesebî a Komara Îslamî ve, sivikkirina ziman, koltûr, heta mesebê wan, çewaşekirina dîroka xebata wan netewan û zaf sedemên din, dest dane destên hev û seba vê yekê ku çavnihêrî û daxwazên netewên zulmlêkirî ên Îranê zêde bin û ji wê yekê pêtir guhdarê siyasetên paremayî û yekdestkerên rejîmê di bin navê îslamê de nebin. Kurdan li gor ezmûnên dîrokî ên xebata netewî a xwe di heyamê 100 salên derbasbûya xwe de û xwediyê partiyên biezmûn û xwedî rîşal ji wan partiyên Demokrat a Kurdistana Îranê her li destpêka hatneserkarê Komara Îskamî ve gihîştin vê têgihîştina rast ku rêberiya vê rejîmê ne tenê tu yek ji daxwazên wan ên siyasî nahên dabînkirin, belkî xelkê din jî di Îranê de rûyê azadî û xweşqetandinê bi xwe ve nabînin.

**Domawê li hejmara tê**

# Garantiya parastina desthilatan, rewatîpêdana xelkê ye, ne...



Siyamend Terbî

Rejîmên dîktator û tutalîter ku tu rewayî û berheqiyek cem xelkê xwe ninin, bona vê yekê ku berdewam deselatê bi ser civatgehê de bikin, penayê ji bo zaf rêkar û alavan dibin. Di vir de ji bo wan negirîng e ku ew rêkar û alavane çiqas berheq û rewa bin! Girtin, îdam, îşkence, sansor, binpêkirina mafên mirovan, heya birêvebirina pîlan û cinayetan cem rejîmên han têne meşandin. Rejîma Komara Îslamî a Îranê yek ji wan rejîmên herî hov tê hisêb ku di pêxema berdewamkirina desthilatê, tev alavên nerewa bikarbirine û tev hêlên sor derbaz kirine. Zêdebarê vê yekê ku di heyamê sê dehikên temenê vê rejîmê de, Îran ji bo tev azadîxwaz û welatiyekê mîna girtîgehekê xwe nîşan daye û yasayên sedsalên navîn bi ser welat de zal kirine, bi dehan fêl û pîlanên din bona parastina temenê xwe bikar birine. Yek ji van fêl û pîlanan em dikaribin îşare bi avakirina Sipaha Pasdaran a Rejîmê bikin ku di pêxema parastina vê rejîmê de çi nexş û rolek heye ? Damezrandina Sipahê di serdemê şoreşa gelên Îranê ji bo çend armancên xasmanî bû. Piştî destpêkirina şerê Îraq û Îranê wek hêzeke nizamî hevterîb di gel Ertêşê wek hêzeke nizamî xwe derxist. Piştî davîhatina şer hêdî hêdî tevlî pirsa abûrî bû, bi awayekê ku niha wek kartêla herî bihêz a abûrî di Îranê de xwe dide holê. Bi hatina Mehmûd Ehmedînijad wek Serokkomar, kabîneyeke nîzamî – tenahî desthilat bi dest girt ku niha zaftir desthilateke sipahî tê mêzekirin.

**Erkê Spaha Pasdaran di qonaxa niha de**

Piştî birêveçûna maşkanê a hilbijartinên gera dehan a Serkkomariyê di Îranê de, meş û xwenîşandanên berfireh bi dijî rejîmê destpêkirin. Meşên ku bingehên deselatê di gel herimînê berengar kirin. Di vir de Sipaha pasdaran û hêza Besîc rolekî herî berçav di tepeserkirina van meşane de hebûn. Parekî biçûk ji cinayetên van hêzane ji bo bîr û raya giştî hatin aşkerakirin û hovêtiya vê rejîmê ji bo tev aliyekê zaftir rohn bû. Di rewş û zirûfek han de em mêze dikin Sipaha Pasdaran serbarê birêvebirina cinayetên han û zêdebarê zalbûna bi ser tev jêrxanên pêyvendiyan û torên Itilaatî ên Îranê, berpirsayetiya raste rast a kargêriya şerên Saybirî jî girtiye stûyê xwe. Ewa jî paş vê yekê tê meşandin ku rejîma Komara Îslamî a Îranê wek rejîmeke dîktator û pawanxwaz bi tewawî seh bi bandora cîhana mecazî li ser guhartinên civakî û siyasî kiriye. Lewra ev rejîme dixwaze bi awayekî rêkxistî li hember wan gefane de berxwedaniyê bike. Terxankirina bûdceyeke çend Milyard Dularî di salê de bona birêvebirina sansor û berahîgirtina ji pêlên ragihandin û zaniyariyan di vê çarçoveyê de cî digre.

Di nûçeyên herî nû de derheq vê mijarê Pasdar Xulamriza Celalî, nûçeya avakirina Qerargeha şerê Saybirî a Komara Îslamî di pêşerojekî nizîk de ragihand. Ferq û cudahî a navbera vê yekê di gel yêkeyên din ên Sipahê di vê yekê de ye ku dîtin û çalakiyên vê di çarçoveya berxwedanî di gel şerên nû de ye ku Înternêt, torên muxabiratî, jêrxanên pêwendiyan ji xwe digre. Xamineyî Rêberê rejîmê jî siyasetên berevaniya Saybirî ragihand. Li gorî naveroka nûçeya ragihandina siyasetên berevaniya saybirî, ev siyasetane ji aliyê kora diyarîkirina berjewendiya rejîmê bona pejrandinê ji bo nivîsîngeha Xamineyî hatine şandin. Hemû hûrdekariyên wan siyasetên han hêj nehatine weşandin, lê Pasdar Celalî, di hevpeyvîneke kurt di gel Malpera Bulten News de got: Welatê me her tim di tirsa gefeke tevalî û teknlojiyan di biyavên cur bi cur de ye û ew kare ji bo kêmkirina wan xesaran di zirûfa şer û kirîzan de tê meşandin.

Avakirina qerargeha şerên saybirî yekem kiryara rejîma Komara Îslamî bona berxwedaniya di gel gefên saybirî nine. gefên ku paş hilbijartinên sala borî dest pêkirin û bona berbendkirina zaniyariyan heya niha binyatên din jî wek cihgiriya pedafenda saybirî a sipahê, Ertêşa Saybiriya Îranê, navenda berhevdana şiyanên rêkxistî ên saybirî û polîsê tenahiya fezaya veguhastina zaniyariya (FITA) hatine avakirin. Hevçax digel weşandina nûçeyên pêvendîdar bi kiryarên cur bi cur ên ertêşa Saybirî a Îranê, nuçeyên derheq cehdên Sipahê ji bo rakêşana hekvan û pisporên tenahihiyê bi destmiz û paçên berçav hate weşandin. Pasdar Xulamriza Celalî di vê derheqê de dibêje: Derheq basa saybirê de em ji hekerên ku di rastaya armancên Komara Îslamî de çalakiyan bikin, pêşwaziyê dikin. Her wusa navbirî hêlek ji bo kesên din jî kişand û got: Bi van hekvanên ku bi armancên gemar dixwazin derbê ji xelkê bidin, huşdarî didin ku emê çalakiyên wan bişopînin û bi xurtî di gel van de bilivin .

Ev cehda karbidestên rejîmê paş vê yekê tê meşandin ku pêştir jêvebûn tenê sîstema berevanî a Moşeka S 300 a Rûsî ye ku dikaribe berevaniyê ji navendên navokî ên rejîmê bike û wan ji gefa her êrîşekê biparêze. Lê bervajiya îdiaya karbidestên rejîmê kivş bû ku bi pêşveçûna zanyarî û teknolojiyê guhartin bi ser şêwaza şeran de jî hatiye û kirmê Istaksnêt bombeyekî herî bihêz e ku dikaribe van navendan tevlîhev bike. Paş cihdana şewatê di dilê Reaktora Boşehrê de nîgeraniyên berfireh di asta bîr û raya giştî de hatine gorê, ku ji aliyê Rojava û Îsraîlê ve êrîşa esmanî bo ser vê vizegehê bihê kirin. Lê vîrosa Istaksnêt ê zaf bi hêminî û bi bêdengî ew pirojeya han ligel şikestê berengar kir ku karbidestên rejîmê tev hîviyek pê girê dabûn. Bandorên vê vîrosa han şêwaza êrîşa bo ser navendên navokî ên rejîmê guherî ku li gorî hin raporan tevlî pêtir ji 60 hezar sîstimên kampiyotêrî ên dam û dezgehên rejîmê bûye. Êrîşên berfireh ji bo ser Malperên Dewletî û alîgirên rejîmê di vê dawiyê de jî li ser wê helwest û biryara rejîmê bêbandor nebûye.

Di vir de pirs eva ye: Gelo karbidestên rejîmê bi avakirina wan navendên han dikaribin di hember wan gefan de berxwedaniyê bikin? Bi baldan bi pêşveçûna zanist, teknolojî û pêwendiyan, karbidestên sipahê bi tu awayekê nikaribin li hember wan gefane de serkevtinê bi dest bixin û bi şerê saybirî tenahiya dinyaya mecazî a dam û dezgehên xwe biparêzin , ji ber ku heya îro dewletên herî pêşkevtî jî nikarin li hember wan êrîşane de di tenahiya tewaw de bin. Garantiya herî mezin û girîng ji bo parastina her desthilat û hikûmetekê berheqbûna wê cem civatên xelkê wî welatî ye, ne tu tiştek din.



# Peyama sersaxiyê bi boneya koça dawîn a Xenî Biloriyan



Li gor nûçeya gihîştî bi me, roja Şemî, 7'ê Adara 2011'an, kesatiyê siyasî yê naskirî ê Kurd, Mame Xenî Biloriyan li welatê Almanya koça dawiyê kir û xatirê xwe ji malbata birêz û dostên xwe xwast.

Mame Xenî Biloriyan sala 1302'a Rojî li bajarê Mehabadê li malbatek naskirî jidayîk bû, piştî derbaskirina qonaxa destpêkîn a jiyana xwe, xwendin li bajarê Mehabadê destpêkir. Piştî damezirandina Komeleya J-K, hesta Kurdîniyê han da ku pêwendiyê bi refên Komeleyê ve bigre.

Piştî damezirandina Partiya Demokrat û Komara Kurdistanê, Mame Xenî yek ji wan ciwanan bû ku xizmet bi armancên Komara Kurdistanê kiriye û piştre ji aliyê Komara Kurdistanê ve bi armanca xwendinê li gel komek ji qutabiyên Kurdistanê bo Yekîtiya Sovyeta berê hat şandin. Piştî hiloşîna Komara Kurdistanê vegeriya Îranê û piştî çend salan ji aliyê rejîma Hemereza Şayê Pehlewî ve hat hepsîkirin û bo heyamê pêtir ji 20 salan di girtîgehê de ma. Di bereberê hiloşîna rejîma paşatiyê li sala 1357' a Rojî de, piştî serbestberbûna di girtîgehê de, carek din xebata xwe di Partiyê de dest pêkir, lê piştî 2 salan refên Partiya Demokrat bi cih hişt û çû dervey welat.

Em bi vê boneyê ve, sersaxiya xwe pêşkêşî malbata wî a birêz û dostên xwedêjêrazî Xenî dikin.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Sekretariya**
**19'ê Reşemeya 1389'a Rojî**
**10'ê Adara 2011'an**

Rojev

# Adar: hin ders û erk



**Ebdulla Hicab**

Li Kurdistanê bi hatina Adarê re bi tenê xweza ji xewa zivistanê şiyar nabe. Bi vejîna jîngehê re ku jêdera jiyanê ye, civaka Kurdistanê jî jiyanek nû distîne. Îsal jî Adar, bi hêvî û xemlên xwe, bi bîranîn û bûyerên xwe, bi şayî û şînên xwe û bi derfet û astengiyên xwe ve hat û dîsan gelê Kurd xiste nava tevger û bizavê. Weke ku qedera netewa Kurd bi xweza û jîngeha xwe ve girêdayî be, hemû salan meha Kurdan ya Adarê bi bûyer derbas dibe. Ji serhildan û berxwedanên mezin re bigre heya karesatên bi êş û azar, di meha Adarê de herdemê hebûn û qedera netewa Kurd dikeve rojevê.

Bila vegotina şêwe, rade û çawaniya bûyeran û bas li ser dîroka her yek ji wan bûyeran bimîne ji wan kesan re ku bi wî çavî dîrokê dişopînin. Dersên ku ji wan bûyeran tên girtin û erkên ku ew ders dixin ser milên me hemû wan kesan û aliyan ku ji wê dîrokê û nirx û buhayên wê re xwedî derdikevin, mijarek bingehîne ku pêwîste pitir li ser bê rawestandin.

Bûyerên Adarê ji aliyekê ve nîşaneya hewlên neyarên mafên gelê Kurd ji bo tunekirina nirx û nasnameya netewî a Kurd e, ji aliyek din ve îradeya Kurdan ji bo berxwedan û hebûnê derdixe. Ya ku neyar dikin û dixwazin li hember gelê Kurd bikin, ji stratêjiya wan ya siyasî tê ku li ser bingeha pilana bêmafkirina gelê Kurd ava bûye. Hê ji pilana stratêjîk pitir, ji cewherê hizra wan tê ku bi wekhevî, mafê mirovan û azadiya kesan re dijber e. Lewma tenê riya ku ew ji gelê Kurd re dihêlin xebat û berxwedan e. Lê ji bo ku ev xebat û berxwedan bigehe wê encama ku gelê Kurd li bendê, bi navkirina hin dersan û baskirina hin erkên henokeyî pêwîst e.

Dersa yekê ku em ji bûyerên Adarê bigrin ewe ku em wê rastiyê bipejirînin ku nêzîkbûna hemû dewletên deselatdar bi ser Kurdistanê bi doza netewî a me re her yek e. Çavkaniya siyasetên wan li hember gelê Kurd yek zêhniyete ku li ser bingeha înkar û tunekirinê ava bûye. Lê her yek ji wan dewletan ji bo perçe kirina tevgera Kurd û paşxistina rojên serketina gelê Kurd bi awayekê tiliya xwe dixin nava tevger û siyaseta Kurd. Ew destwerdan bi xwe re perçebûna zêdetir, şikandina hest û kerameta netewa Kurd u binpêkirina îradeya netewyî li Kurdistanê tine. Bi kinî, li welatên ku em lê dijîn dewletên dostên gelê Kurd nînin û her aliyek bi awayekê dixwaze bi qedera Kurdan bilîze.

Dersek din ku em ji dîroka xwe û bûyerên wê fêr bibin ewe ku îdeolojiyên heya niha li wan welatan hatî ceribandin, ji çareseriya pirsên siyasî û neteweyî re rêbazên serketî nînin. Ne bîrokeya netewe-dewlet ku îro di deselatê de ye, ne neteweperestiya şoven ku hebûna xwe di nebûna yên din de dibîne, ne îdeolojiya tenge Marxist-Leninist ku bi tenê tovê dijminkarî û dijberiyê diçîne û ne jî durûtiya ku bi navê ol û di bin sîvana "Îslama siyasî" de îro Rojhilata Navîn dişevitîne, çi yek ji wan bi xwe re çareseriyê naînin. Bi kurtî, bîra teng, çavên girtî û îdeolojiya qalibgirtî bela serê gelan in.

Nêzîkbûna tu ji dewletên deselatdar bi ser Kurdistanê bi beşek ji tevgera Kurd li her perçeya Kurdistanê, tenê ji bo bikaranîna wê beşa tevgerê li hember beşek din û bi mebesta dijayetî li gel doza neteweyî li Kurdistanê ye. Tenê hêza ku gelê Kurd dikare û dibe pişta xwe bide pê û jê xatircem be, hêza Kurd bi xwe ye. Dersa ku em jê fêr bibin ewe ku dijminê bab çi gavê nabe dostê kur.

Dersek din ku em dikarin û em dibe ji qedera xwe û ji bûyerên Adarê fêr bibin kiryar û siyaseta me bi xwe ye. Me çi kir, em çi dikin û emê di pêşerojê de çi bikin. Çi hate kirin ku dikarî wisan nebe, çi dibûya bê kirin ku nehate kirin, kêmasiyên me bi xwe çi bûn û emê çawan wan kêmasiyan sererast bikin. Renge vegotin û bi bîranîna wê dersê ji hin kesan re û ji hin biryarderan re xweş nebe. Lê eger em xwe li hember wê beşa bûyeran ku em bi xwe tê de beşdar bûn û me bi destê xwe anî serê xwe bi berpirs nebînin û kêmasiyên xwe nebînin, me dersek girînge dîrokê ji bîr kiriye. Kurd dibêjin ji bo ku tu mexdûr nebî û tu kesî jî mexdûr nekî, du car bipîve û tenê carekê bibre. Tevgera Kurd pêwîst e kêmasiyên xwe destnîşan bike u berpirsayetiya xwe li hember dîroka netewa xwe bigre stuyê xwe. Bi kurtî dibe ji niha û pêve Kurd bi xwe bibin hostayê dîroka xwe.

Bi dersa dawî ve girêdayî, hin erkên henokeyî ku dikevin ser milê me derdikevin qadê. Erka herî bingehîn û girîng di qonaxa niha de ewe ku li hember kultûra deselatdar, ya ku bi salane em li hemberî wê têkoşînê dimeşînin, em kultûrek alternatîv bi pêş bixin. Kultûrek ku bi her awayî û bi hemû reng û şeklên xwe ve ji kultûra deselatdaran cuda ye. Kultûrek ku di bingeha xwe de ji durûtî, derew, dudevî û ji şikandina kermaeta mirovan bi dûre. Kultûra alternatîv ku li ser bingeha rêzgirtin ji mirovan re, nirx û hurmeta wekhev, mafê mirovan, eqlaniyet û rêzgirtin ji hilbijartin u biryara tak û civakan hatibe avakirin. Ji bo ku em hemû wê erkê hest pê bikin pêwîst e, pêvajoya guherîn, xwe nûkirin û vebûna demokratîk hertim di rojeva me de be.

Erkek din yê herî bingehîn di dema pêşiya me de, xurtkirin û pêşvebirina projeya hevbeşe neteweyî li Kurdistanê ye. Ji ber ku nirxa hevbeş ji bo hemû gelê Kurd tenê dikare ew projeya neteweyî be ku rê veke heya netewa Kurd jî bi biryara xwe û bi raya xwe ya azad çarenûsa xwe diyar bike. Projeya neteweyî ew rêçareya siyasiye ku li ser bingeha nav û nasnameya hevbeş ji riyên çareseriya pirsa neteweyî digere u netewe û qedera netewe ji her partî, alî û rêbazên siyasî mezintir û bi rûmettir dibîne. Dema projeya neteweyî xurttir bibe, êdî her aliyek tenê serê difna xwe nabîne.

Erkek din ku dersên ji Adar û karesatên dîroka me fêrî me dike ewe ku hemû Kurd, hizir, kiriyar û siyaseta ku Kurdan tîne himberanî hev, netifaqiyê çê dike û hêz û şiyana siyasiye netewa Kurd perçe dike biherimînin. Di wî milî de, hemû hêz û aliyên Kurd xwedî berpirsayetî ne û her yek bi têra xwe xwedî rol e û her bi wî awayî jî dikare ji aliyê xwe ve ji bo guherîna wê rewşê kar bike. Netifaqiya navxweyî belaya herî mezine serê tevgera Kurd û astenga sereke li ser riya pêşveçûna doza neteweyî ye. Bila di nava Kurdan de ew zêhniyet pêş bikeve ku destên direjî hev dibin bila bişkên, zimanê ku direjî hev bibe bila lal be, zêhniyeta ku Kurdan ji hev dûr dixe bila bixitime.

Erkek din ku ew ders dixin ser milên me, ewe ku tevgera Kurd modela xwe ya çareserî û desthilatdariyê bi destê xwe bi pêş bixe û bide nasandin. Modela çareserî û desthilatê ku tevgera Kurd bi pêş bixe, dikare hem hêvî û baweriya gel bi pêşeroj û bernameya siyasiye tevgera neteweyî xurt bike û hem jî meşrûiyetek cîhanî bide xebata gelê Kurd bo azadiya neteweyî. Ew model her wisan dikare bibe bingeh ji bo sîstema siberojê ku Kurd dixwazin ava bikin. Bi wî awayî tevgera Kurd bi destê xwe deriyê qedera xwe vedike.

Îro ser û bin ên herêma Rojhilata Navîn di nava ta û jana guhertinê de ye. Ev pêvajo dereng an zû wê Kurdistan û welatên desthilatdar bi ser Kurdistanê de jî bigre. Hindî dereng nebûye pêwîst e ku tevgera Kurd, bi taybet hêz û rêkxistinên Rojhilata Kurdistanê ji bo avakirina pêşerojek baştir, xwe ji rewşa ku niha di nav de dijîn derbas bikin. Adar bila ji niha u pêve bi tenê meha bûyer û karesatan nebe, bila bibe meha pilan û projeyên siyasî ji bo avakirina pêşerojê.

Agirî 8
Hejmar 155, 21 'ê Adara 2011

# Rojên Cejnê bûne kabosek bo Komara Îslamî



Ceifer Mubeşirniya

Tu takek ji civaka gelên Îranê nine ku di qonaxa seretayî a qutabxaneyên Îranê de helbesta 22' Rêbendanê nexwendibe ku di dêrek wê helbestê de hatiye "22'ê Behmen "Rêbendan", roja keniya me û roja giriya dujmin" e.

Guman tê de nine ku Komara Îslamî a Îranê di sîstema perwerdeyê de hertim hewlên radîkalkirina zarokan di çarçoveya îdeolojîka xwe de daye û dide. Lê di vê helbestê de mirov dikare têbigihîje ku vê rejîmê bingeha perwerdeyê çawan di riyek berxwar de daniye û dixwaze civakê ber bi çi arasteyek şaş ve bibe. Berî her tiştî Komara Îslamî peyva dujmin kiriye benûştê ser devê xwe û berdewam di nav xelkê xwe û di kombûn û civînan de bikartîne, bi bêy vê çendê ku bide xuya kirin ka ew dujmin kî ne. Yan jiber çi û bi çi awayekê dujmin tên hesibandin, yan ew dujminên kê ne?

Di rastî de ewa ku rejîm dibêje dujminên gelê Îranê, gelo bi rastî jî gelên Îranê ew qas xudî dujmin in? Yan ew dujminên ku Komara Îslamî dibêje roja 22'ê Rêbendanê roja giriya wan e, kê ne? Rast e ku şoreşa gelên Îranê di sala 1979'an de serkevt, lê Komara Îslamî bi dizîna berê wê şoreşê, bi çi şîweyekê xwe bi serkevtî dizane.

Gelo serkevtina Komara Îslamî bo dabîn kirina jiyanek serbest ji xelkê re û di pêxema civakek azad û tenah de bû, yan jî serkevtin bi ser hin ji mirovan de, ku piştî nemana wan mirovan wate jiholêrabûna dîktatorekê û bingehdanîna dîktatorek zalim û paremayî ên di ku rayedarên vê xwe bi serkevtî dihesibînin bêy ku bizanin de heya çi qasekê bersivderê daxwazên xelkê bin.

Piştî 32 salan bi temamî eyan bû ku Komara Îslamî bi armanca bingehdanîna jiyanek serbestane ji bo xelkê û bersivek hêjayî keda xelkê şoreşvan sernekevt, belkî li hember hin ji mirovan ku weke kîn di dilê xwe de ragirtibûn, gihîştin desthilatê û tew îhsasên xwe di çarçovey vê kerb û kînê de xurt kirin.

Lê dema ku xelk ji jiyanek serbestane di bin siya Komara Îslamî de bêhîvî bûn û hişyarbûn dîtin ku bi rastî xelkê Îranê tu dujminek ninin, ger dujminek jî hebe, tenê desthilatdarên mirovkuj ên Komara Îslamî ne, dema ku xwe li gel xelkê cîhanê hevgav kirin, tu rojek wa cuda nedîtin ku roja keniya wan be û roja giriya tew cîhanê. Di rastî de pirr rojên mezin û girîng ên cîhanî hene ku roja keniya tev civaka cîhanê û rojên dijwar ji bo desthilatdarên Komara Îslamî ne.

Bo mînak, yek ji wan rojan ku hemû cîhan rêz jê digre û bi cejnek sertaserî a cîhanê dizanin û wê rojê bilind dinirxînin, roja 8'ê Adarê roja navnetewî a jinan e ku derbasbûna wê rojê di Îrana dîktatorlêdayî de weke kabosekê di nav dil û henavên desthilatdarên rejîmê de derbas dibe. serbarê rêznegirtin ji wê rojê, qedexekirina her kom û civînekê fîmînîstî, jiber girtina rewşek tewaw ewlehî û sepandina zirûfek polîsî di welat de, tepeserkirina her liv û çalakiyeke rêzgirtin ji wê rojê û di hin cihan de jî destbiserkirina hin ji çalakan ku weke her car bi sûçên cur bi cur, cejnaneya jinên Îranê ye.

Yeke din ji wan cejnan, Newroz e. Newrozê dîrokek dûr û dirêj heye bi taybetî di nava gelê Kurd û gelên Îranê, û bi dîrokîtirîn û mezintirîn cejna wan netewan tê hesibandin. Ev cejna, salek berî niha ji aliyê Saziya Navnetewî ve weke cejnek cîhanî hat naskirin. Niha ku di bereberê wê cejnê ye û xelkê Îranê ji bo rêzgirtin ji cejna newrozê amade dikin û bicîhanîbûna cejna newrozê xwe weke şanaziyeke mezin a netewî didin zanîn, Komara Îslamî dîsan xofek mezin ji derbasbûna wê cejnê heye û her ji niha ve gefan ji xelkê dixwe bi taybetî bo birêveçûna cejna kuleçarşemî "çarşema sor"ê û ditirse ku ew cejna seranserî a gelên Îranê bibe seba pêkhatina yekîtiyekê dinavbera netewên Îranê de ku di rastî de jî tenê newroz e ku hemû netewên Îranê bibê hizrên cuda û bi yek avayî beşdariyê di birêveçûna wê de dikin.



Newroz roja xweşiyê ye û roja xilasbûna xelkê hejar û destkurt yê Îranê ji zivistana sar û li saya serê Komara Îslamî û terhên wan ve sartir û birçîtir ji her zivistanek din e. Rojeke ku kasibkar keyfxweş in ku dê bikarin destbikar bin bo firotina hêza milên xwe li hember nanekê şerefmendane ji bo zarokên xwe, roja girnijîna xelkê Îranê ye, lewma bêguman ji bo rejîma dijî xelk, dijî xweşî, dijî yekîtî, dijî kenî û henek û girnijîn, ku di xweştirîn demên jiyana xelkê de bi xurt kirina pêvajoya xwe a tepeserkarane rojên cejn û şahiyan ji wan dike rojên şîn û giriyê, rojek pirr nexweş û bi xof e.

Tenê roja keniya desthilatdarên Komara Îslamî "22'ê Rêbendanê" jî heyamê 2 salan e ku ew kenî jî ji wan herimiye, berevajî bûye û hatina wê rojê ji mirovkujên Komara Îslamî re mizgîniyek xweş nine. Niha mirov dikare bêje ku desthilatdarên Komara Îslamî, kîjan dijmin, kîjan serkevtin, kîjan şoreşa îsalmî, kîjan kenî û kîjan girî? Ger heya niha rojek ji bo rayedarên Komara Îslamî hebû ku –roja keniya wan bû û roja giriya dujmin-, îrorojê her cejn û şahiyek ku di seranserî cîhanê de roja keniya xelkê ye, ji melayên xwînmij û "îblîsên" zeman ên Komara Îslamî re rojên giriyê ne.

# Riya min ji te dûr e

**Şîpel**



***Riya min ji te dûr e, bêje ez çi bikim***
***Dilê min ne gewir bû kir hêlûna xem***
***Be te rondikek ji behra xweşiyê me***
***Taqet min nema daxwaza roniyê me***
***Westyayî û tênî me gel dengê min bibe yek***
***Bo armanca min û te, hêşta mane rêk***
***Ax, çavên perperik bo me ter in***
***Teyr û teval ber xemên me nafirin***
***Çaxê dibihîzim çip çip rondikên esmanan***
***Çav ewrên xwe reş dikin wek hemû caran***
***Tu çaxê rojhilat î ez dengê banga mela***
***Ji lêvan tînim navê daxwaza dila***
***Hemû rê ku digîjin welatê te***
***Qetiyan yar, şehyana min helalê te***
***Te da min riyek nav wan mêrg û zeviya***
***Nav de kevir û kendal, dil ber wan heliya***
***Riya min ji te dûr e, lawê çavbelek***
***Dizanim resme lawo resma te û felek***
***Bihar çûn, rêving nahên rê girtî ne***
***Dil pirr bû, mirovahî bira te nine***
***Bîra min de her tuy û gelek xeyal***
***Ji dil xwîn tê, ji çav rondikên zelal***
***Rojan xem û şevan xem, sed hezar in***
***Riya me dûre, pirr payîz û kêm bihar in***

Agirî 9
Hejmar 155, 21 'ê Adara 2011

# Nivîsîn huner e û huner jî zanînê dixwaze



Hemîd Muxtarî

Mirov ger bixwazin bi hev re pêwendî bigirin û dest bikin bi guherîna hizr, nêrîn û hestên xwe, pêwîst e ji rêya bikaranîna hinek hêma, nîşane û peyaman ku wateyên wan ji bo pêkhênerên pêwendiyan bê fehmkirin, vê yekê encam bidin. Wate hebûna zimanek hevbeş, bo mînak Kurdek û Farsek demekê dikarin bi hev re pêwendiyê bigirin ku her du xwedî şiyan bin derheq axivtin bi zimanek hevbeş di navbera xwe de û ji hevdu fehm bikin.

Lê sedemek din jî ku dibe sebebê yek alîbûna pirosesa gihadinê (Communication)ê, li berçav negirtina hin têdîtinên girîng in wek bikarneanîna zimanek rol û eşkere û leyîztin bi peyvan ku eva jî dibe sebebê wundabûna naveroka peyamê.

Ev yeka bo piraniya kesan hatiye pêş, dema mijarek dixwîne, ji ber bilindbûna asta zimanevaniya bikarhatî û yeknegirtina wê ligel şiyana fehm û têgihîştina xwendevan, pirosesa gihandinê bi serkevtî nahê encam dan, ji ber ku nivîskar nekariye peyama xwe bigehîne xwendevanan û nivîsa wî bê bandor dibe. Eva jî bi vê wateyê tê ku nivîskar tu tiştek nekiribe, Ji ber ku hemû kesên ku dinivîsîn in bi yek arman vî karî dikin, ev jî bi qena'etgihandina wergir û hevhezkirina wî\wê ligel xwe û arastekirina wergiran e. Çimku bi qenaietgihandin bi wateya pejirandin, qebûlkirin û pesendkirina peyamê ye ji aliyê wergiran û hevhizirkirina wan e ligel nivîskarê mijarê. Berevajiyê vê yekê bi wateya bi xesarçûn û redkirina hewlên gihandinê ye û eva jî tê wateya şikistanîn di pirosesa pêwendîkirin û bi qenaietgihandina wergir.

Lewra dema kesek mijarekê dinivîsîne diviya di gava yekem de van pirsan ji xwe bike, gelo ez vê mijarê ji bo kê dinivîsim? wergirê min kê ye? asta têgihîştina wê û wî çend e? gelek caran nivîskar yan çavkaniya peyamê bê guhdan û liberçavgirtina asta têgihîştin û rewşenbîriya wergir û lawaziya şiyana wergirtina yan du peyamekê ku mezintir û di astek bilindtir de ye pêşkeş dike, eva jî dibe sebebê wernegirtina peyamê ji aliyê wergir ve. Bo mînak ger mirovek zana û têgihîştî bi hemen zimanê ku ligel zanayek din diaxife, ligel kesk ku asta rewşenbîrî û xwendewariya wê\wî kêmtir e biaxife, wek çekuçê li ser sindanê ye û nabe çavnihêrê bersiv yan helwestê be ji aliyê wergir, ji ber ku pêwendiyek bi vî awayî pêwendiyek yek alî tê hesêb.

Lewra pêwîst e nivîskar di dema nivîsîna mijarekê ji zimanek rohn û astnavincî mifahê bistîne, ji ber ku hewce dike terzê nivîsandia rojnamevaniyê ji bo xelkê rohn be. Eva jî ji rêya bikaranîna zimanek hêsan tê encamdan ku bi vî awayî dikare bigîje armancên xwe jî, bê ku tu peyvek giran û nerohn bikar bîne



ku xwendevan di dema xwendina mijarê de zehmetî jêre çêbe. Lê li hemen demê de jî eva ne bi vê wateyê ye ku nivîsandina rojnameyan de gelek senahî û wek axivtina rojane ya xelkê be.

De dema nivîsandina mijarekê diviya ji warê naverokî ve çend xalan liberçav bigirîn ku birîtî ne ji bikaranîna ew peyv û hevok û wêneyên ku xwendevan bi senahî lê fehm bike û wan werbigire. Hin kes bo ewê ku axaftinên xwe girîng bidin nîşandan, berdewam ji peyvên biyanî mifah distînin ku eva ne karek dirust e, kesên ku wateya wan peyvên biyanî nizanin, nikarin ji mijarê têbigîjin û bê guman nakevin bin bandora wan. Hin caran hin mijar jî hene ku bi tu awayekê peyv û hevokên biyanî têde nehatine bikarhatin û xwendevan çend caran jî dixwîne, lê jê fehm nake. Helbet xeta û sûç ne ji xwendevan e, belkî xeta ji nivîskar e. Ji ber ku nivîsandin bi xwe hunerek e û her hunerek pêwîstî bi zanîn û pisoprî û fena dirust a gihandina

# xwenebaweriya zarokan



Sefye Xalidî

bi xwebawerbûn klila deriyê dadayi yên gelek xweşiyan û rastiyan e.
Em hemû ji xwe baweriyêhez dikin, lê bi rastî em bi tu awayî dikarin bibin xwediyê wê xwebaweriyê?

li rastî de baştirîn dem ji bo wê xwestikê temenê zarokatiyê ye, yek ji riyên herî baş ku mirov dikare hestên baweriyê di zarokan de biafirîne, beşdariya wan di biryarên malbatê de ye. Ger ku ji hizr û nêrînên zarokan jî bihê pirskirin, bila derheq tiştên pirr biçûk jî be, lê ew yek dibe alîkar ji bo afirandina xwebaweriyê di zarokan de.

Niha di malbatên civaka me de pirr kêm tê dîtin ku bav û zarok bihev re bimeşin, bibêjin, bikenin, qala jiyanê bikin, hertim perdeyek di navbera wan de heye ku dibe sedemê li hev nêzikbûnê.

Di civaka me de pirsgirêk hin aloz in, bo mînak, rêz û hurmeta dayîkê di bingeha kultura me de hebûye û heye, lê tenê dayîk û zarok pirr bi hevre hewal û dost in û mixabin bav di wê navberê de rola xwe a rastîn nabîne.

Piraniya caran ger zarok karek qencî bike, girnijîn li ser lêwên dayîk û bavan neveşartî ye. Lê gava ku karek neqenc ji zarokan bihê rûdan, dayîk dibe armanca rexneyên tun û tûj û dijwar, heya destbilindkirina ji aliyê mer ve û zarok jî di quncikê rûdine û dibihîze û ji tirsa wê rewşê, pir caran ji mal jî direvin.

Zarokan di malbatê de mafê peyvinê nine û pirr caran mafê hilbijartina alavên bi xwasta xwe jî ninin.

Mirovek ku di vê rewşa jiyayê de mezin bûye, mirov nikare çavnihêriya baweriyek têr û tesel jê hebe.

Mirov dikare bibêje hejimarek zaf malbatên civaka me bi sedema kartêkeriya siyasetên Komara Îslamî a Îranê tevlîhev bûne.

Pirsgirêka mezin ku bûye sedema belav bûna endamên malbate û mirina evina di nav malbatan de, serekîtirîn sedem û pirsgirêka herî mezin, lawaziya abûrî, tunebûna kar û xebat û giraniyê ye.

Pirsgirêka abûrî tesîra xwe li ser morala endamên malbatê dadinê. Dema ku mirov moral û wireyek bihêz nebe, ewlehî û hêminiya mirov pirr zehmet dibe.

Zarokên ku dinav astengiyên mezin de ji dayîk dibin, rih û hizra wan nebaş e û di gelek buyer û qonaxên jiyanê de aweriya xwe ji dest didin.

Ji dest çûna baweriyê dibe sedema nûvîşkanbûna hizr û rihê mirovan. Nebûna xwebaweriyê di hemû têkiliyên takekesî û civakî de tesîra xwe ya nigatîv datine.

xwebaweriya her kesekî di her civakekê de bi avayek rasterast vedigere ser system, yasa û zagonên civakî û çanda ku di malbatê de bi ve mezin bûye û dîsan her wek me di jor de jî amaje bi vê çendê kir ku malbat û dayîk û bav dikarin rolek sereke di pirsa pirr hestiyar a bilindkirina asta xwebaweriyê di rihê zarokan de bilîzin.



# Pêvajoya muzîka jêrzemînî di Îranê de, rayedarên rejîmê nigeran dike!



Dara Natiq

Asimîlekirin û jinavbirina çand û kultûra netewên bindest û berevanî kirin tevî pêvajoya bilez a peşveçûna çand, zanist û teknolojiya îro a cîhanê, bi hêceta şer tevî îriş û nifûza çand û kultûra Rojava, yek ji siyaset û sitratêjiya qirêj û biyom ya sîstema daxistî û paremayî a Komara Îslamî a Îranê ye ku heyamê zêdetir ji sê dehsalan e ku ji hêla navendên tepeserkar û zanistkuje wê rejîmê ve bi avayên cur bi cur tê meşandin.

Rejîma xudîdeshilat a Îranê her di yekem roja bi talanbirina destkevtên Şoreşa gelên azadîxwaz yên Îranê di sala 1979'an a Mîladî de, bi avayek sîstematîk bi daxistina navendên zanistî û konterol kirina dam û dezgehên rewşenbîrî û çandî û nemaze navendên muzîkê, hewla wê çendê da ku tovê çanda şîn, giryan, reşpoşî û bêhêvîbûnê û... di nava civaka pêşkevtinxwaz a gelên Îranê de biçîne. Bi vî avayî her tişt li gor şirove û berhevdan di çarçoveya felsefeya îdeolojîk a ola Şîe û 'Wilayeta Feqê' û bi heram zanîna wan de, bi ser xelkê Îranê de hat sepandin.

Yek ji wan pirsên ku rayedarên Îranê bi awayek tund li hember de sekiniye, pêvajoya muzîk û sitran gotinê ye. Wek ji hemî aliyekî re rohn û eşkere ye ku, heya çend sal berî niha zebt, çap kirina newaran, CD, DVD û vîdeo kilîb, di Îranê de bi bêy îzin wergirtina Wezareta Rênîşandanê karek îza bû. Herwisan rejîmê her di roja yekem de muzîk bi diyardeyek heram ragehand û ji civaka wî welatî re got ku pêşiya zarokên xwe bo aliyê sitran û muzîkê ve bigrin, jiberku ew yek berewaji orfên îslamê ye û karek heram e. Rejîmê li devsa vê çendê muzîka rezmî û sitranên cengî û olî weke altirnativa vê hindê jibo xapandina xelkê anî holê.

Lê serbarê tev wan asteng û girêpêçkên ku ji aliyê Komara Îslamî ve hatibûn diyarî kirin, şoreşa ragehandin û pêwendiyan, îmkana zebt û çap kirina berhemên muzkê jibo hin xurtên dewlemend û xudîşiyan yê wî welatî di istudyoyên malbatî û kompûterên şexsî bi hezîneyek kêmtir pêk anîye û ew çende bûye sedemê vê hindê ku rewşa konterol kirina muzîkê ji sansora dewletî û kompaniyaên mezin rizgar bibe û îradeya pêşkewtinxwazane a xurtên wî welatî bi ser zihniyeta bertenge a deshilatdarên welêt de zal be.

Henoke yek ji wan pirsên ku bûye cihê nigeranî û tirsa rayedarên Komara Îslamî a Îranê, peşwaziya berbiçav a ciwanên wî welatî ji muzîka Rojava û bitaybet muzîka cîhanî ya Pap e ku bi muzîka 'jêrzemîn' di îranê de hatiye nas kirin ku bi avayek berfirehtir û bilez berbi pêşve diçe.

Piştî şerê Îran û Îraqê, pêlek ji ciwanên xudîşiyan û bi zihniyetek pêşkevtî, pê avêtin nava civaka çandî û siyasî a wî welatî ku dengê xwe di çanda dewletî de guhdarî nedikirin. Sepandina siyaseta çanda şer, şoreş, kuştin, şîn, girî û reşpoşî u... êdî ew vestandibûn. Vêzarbûna wan ji wê siyaseta biyom a rejîmê bû sedemê vê çendê ku ew ji her rêyek momkin bo pêşve birina armancên û berevanî kirin tevî vê siyaseta qirêj ya rejîmê mifahê werbigirin.

Geşe kirin û berfirehtir bûna muzîka ne yasayî û 'jêrzemînî' di Îranê de, weke geşekirina Wêblag nivîsiyê di Îranê de, berhema şoreşa teknelojî û herwisan pêkhateya parek ji heşîmeta civakekî ye ku 70 ji sedî a heşîmeta wî welatî ew ciwanin ku jiyê wan di bin 30'î saliyê dene pêk hatiye.

Di Îrana bin siya Komara Îslamî a Îranê de, kiç û kur mafê sitran gotinê bi hevre tuninin û diviya ew sitran û muzîka ku di wî welatî de tê gotin yan jenîn, di çarçoveya sinorê diyarî kirî anku muzîka rezmî de bihên sitrîn. Lê di pêvajoya pirsa muzîka jêrzemînî de ew sinor hatine şikandin û kiç û xurtên welatê me bi bêy berçav girtina sinorên daxistye rejîmê û srebarê sepandina asteng û girêpêçkên tund, bi avayek bivêrane bihvre ji bo afrandina berhemên nû û pêşvebirina sitran û muzîka welatê me tekoşîna xwe a birûmet bi avayên cur bi cur dimeşînin.



Li gora gotina Efşîn Dawer, endamê şanda zanistî a Peymangeha Çand û Hunera Cehada Zankoyê, û ji wan kesên ku ji bo rûniştina navenda Şêvra Kêviş kirina berjewendiyên nizamê, ku bo vekolîn û dîvreçûna pirsa muzîka jêrzemînî hatibê gazî kirin got ku: pêka vekolîna 86 komên muzîka jêrzemînî ku ji 133 sitranbêjan pêk hatiye, heya niha 376 kilîb bi avayên nezagonî hatine tomarkirin ku piraniya wan sitranbejan jiyê wan di navbera 16 heya 20 saliyê dene. Herwisan Mesud Koserî yek ji wan kesan e ku bo vê civînê hatibû gazî kirin ragehand ku, asta jiyê Raperên welêt navbera 13 heya 15 salî de ye û bi giştî muzîkvanên jêrzemînî ji di nevbera 15 heya 25 saliyê dene.

Ewa ku li vir cihê baldanê ye, ew e ku serbarê hewlên rayedarên Komara Îslamî a Îranê bo sepandina Îdeolojîka daxiztî û zihniyeta paremaye xwe bi ser xelkê de û ji aliyek din ve berfirehir kirina navendên tepeserkar û mirovkuje xwe û pêkanîna rewş û zirûfek polîsî, lê xurtên azadîxwaz yên welatê me ji her delîve û fersendekê jibo dirkandina dengê nerazîbûna xwe mifahê werdigrin. Berfirehtir bûn û geşe kirina pêvajoya muzîka jêrzemînî ji aliyê ciwanên welatê me ve, wedigere bo siyaseta şikestxwarî a rejîmê û îradeya bihêz û bivêr a xurtên welatê me ku tucar amade ninin li hember siyasetên biyom yên rejîm sitûyên xwe xwar bikin.

Ew yek bûye sedemê tirs û nigeraniya rayedarên rejîmê. Di heyamê wan çend salên derbas bûyî de bi taybet ji hêla hin axundên xuya û pşnimêjên welatê ve, berdewam bas ji herambûna muzîk û sitranan tê kirin û bi dê û bavan re dibêjin ku bi tu avayekê nabe bihêlin zarokên wan hevrîşî vê pêvajoya biyom bibin û ji rê û rêbaza îslamê bifilitin. Ji aliyek din ve navendên xudî biryar yên vê rejîmê nemaze Şêvra Kivşkirina Berjewendiyên Nizamê di civînên xwe yên taybet de ji bo navendên xwe yên tepeserkar re ragehandine ku diviya bi tundî li hember wê diyardeyê (ku jêre dibêjin îriş û nifûza çanda Rojava) bisekinin û kesên ku di vê derheqê de tên destbiser kirin bi tundî bihên ciza kirin.




## Fîlmek li ser jiyana hunermendê Kurd Ciwan Haco

**Di bin navê (Li ser riya Amedê) de, televîzyona Swêdî SVT 2, fîlmeke dokumenter li ser jiyana Ciwan Haco diweşîne...**

Filmek dokumenter li ser serpêhatî, muzîk û ramanên artist û muzîkvan Ciwan Haco pêşkêş dike.
Mirov dikare li çar welatên skandinaviya Siwêd, Fînland, Danimark û Norwêjê li STV temaşe bike.

Piştî 25 salan li xerîbiyê, sala 2005'an, Ciwan Haco diçe Newroza Amedê. Lewma jî navê fîlmê danîna "Vägen till Diyarbekir" (ango Li ser riya Amedê).
Fîlm 58 deqîqe ye.

Ev fîlma dokumenter, cara dawî li Norvêjê yek ji fîlmên "Bergen Filmfestivalen 2010" bû.
Dokumenterek tevlî hesreta welat, jiyana li xerîbiyê, hestên mirovan û ev fîlma dokumenter dihêle ku mirov hunermendê bi nav û deng Ciwan Haco û jiyana wî ya sade, hinekî ji nêzik ve nas bike.

**Avestakurd**

Hejmar 155, 21 'ê Adara 2011

# Nêrînek Kurt derheq sînemaya cîhan û Îranê

N: Mumtaz Ebdullahî
W: Şehab Xalidî




Destpêka sedsala Bîstem, destpêka gelek ji guhertinên modern tê hesibandin û di vê navberê de sînema yan hunera hevtem rolekî berçav di guherînkariyên civakî, abûrî û çandî û ... de heye. Sînema ku di pênasa zanistî ya vê de tê gotin tayek ji hunerê ye ku têde destanek bi riya dîmenên gerok tê nîşan dayîn. Her çend tê gotin ku "Birayên Lumyêr" di sala 1895'an a Zayînî de pîşesaziya sînemayê pêk anîn, lê divêt em bala xwe bidin vê rastiyê ku berî wan du birayên Feransevî, çêkirina dezgehên wek Kîntoskop û Wîntaskop di peydabûna dezgeha Sînematogirafê de rolek berçav hebûye. Piştî Lumyêr Feranseviyek din, wate "Jiri Mê Luys" rolekî berçav di berfirehkirina sînemayê de hebûye. Divêt ev rastiye jî bihê gotin ku hunermendek din jî wate "Êdwîn Ês Portêr" di warê tekmîlkirina bingeh û pêkhateya sînemayê de hewlek micid da, û sînema ji çarçoveya nimayiş û tîatrê de derxist û bi vê şeklê ku îro em dibînin nîşana xelkê cîhanê da. Navbirî bi berhemanîna fîlmên wek "Jiyana agirkujên Amerîkayê" û " Dizîna mezin a şemendeferê" ji yekimîn hunermendan e ku destpêkerê fîlmsaziya modern di Halîwûdê de ye.

Di dirêjiya wê nivîsarê de çi başe ku em bala xwe bidin dîrokek kurt ji sînema di Îranê de. Hunerek ku tenê Sed û çend sal bi ser afirandina wê re desrbas dibe. Bo cara yekim Muzeferidîn Şayê Qacar kemirayê fîlmhilgirtinê anî Îranê ku di sala 1279'ê de bû û bi vî awayî bi hatina sînema tografê qonaxek nû di sînema û di vê pîşesaziyê de pêk hat. Di sala 1291'ê de yekimîn hola sînemayê giştî hat çêkirin. Heya sala 1308'ê tu fîlmek di Îranê de nehat çêkirin, û sînemayên wî demî tenê fîlmên bîhanî bi jêrnivîsa Farsî dihat weşandin, yan jî tenê kesekê heya dawiya fîlmê çîroka fîlmê bas dikir û xala balkêş ev e ku di wê qonaxê de hunera sînemayê hunerek eşrafî bû, û xelkê asayî nedikarîn herin nava wê sînemayê de, heya ku di sala 1308'an de yekimîn fîlma bilind a sînemaya Îranê bi navê "Abî û Rabî" ji aliyê "Awans Ogans" û bi fîlmhilgirtina Xan Baba Moitezidî hat çêkirin.

Di navbera salên 1308 heya 1311'an de çendîn fîlmên bêdeng di Îranê de hatin çêkirin, lê di sala 1311'ê de guherînek bingehîn di sînemaya Îranê de pêkhat û ew jî çêkirina yekimîn fîlma bideng a Îranî bi navê "Keça Lor" bû ku ji aliyê Ebdulhusên Sepênta di Bembeyî de bû. Ev guherînkariya bingehîn hêdî hêdî dibû sedema bûyerên girîng ên sînemayî di Îranê de, lê destpêkirina şerê duyema cîhanî û herweha sansora herî tund û zalbûna rewşa pirr ji tengezarî û aloziya siyasî û civakî ji aliyek din ve sînema berbirûyê astengiyan kir. Lê wê rewşê gelek dewam nekir û di sala 1322'an di bi avakirina çendîn şirketên sînemayî guhertinek berçav û modern di sînemaya Îranê de rûy da. Piştre di 28'ê Gelawêja sala 1332'an de jî derbeyek çê bû ku rewşa sînemayê aloz û tûşî astengiyan kir.

Bê şik mirov dikare dehka çil a Rojî, dehka bazdana herî mezin a sînemaya Îranê binav bike. Helbet nabe mirov ji bîr bike ku avakirina civata perwerdeya fikrî a zarokan û nûciwanan di sala 1348'an de û herweha hevkariya ciwanekî wek Ebas Kiyarostemî bi wê civatê re rolek mezin di şekilgirtina pêlek nû ji sînemayê hebû, ku bê şik sînemayên welatên din ên cîhanê bandor li ser hebûn.

Di dirêjiya de divêt bihê gotin dehka Pênciyan, sînemayek siyasî ye, û têde bîr û boçûnên cur bi cur ên siyasî bi riya dîmenên re tên gotin. Herçend di wê navberê de fîlm ji texên cur bi cur ên civakê jî tê hilgirtin, û ew tên rexnekirin jî.

Sînemaya piştî şoreşa sala 1357'ê heya sala 1362'an sînemayek tevlîhev e, ji aliyekê ve berî sala 1360'ê fîlmên siyasî bi naverokek şoreşvanî tên çêkirin ku piraniya wan mijarên tekrarî û biserçûyî ne. Ji aliyekê din ve tevî destpêkirina şera Îran û Îraqê pêlek nû ji fîlmên şer destpêkir û piştre jî pêlek nû ji fîlmên malbatî hatin ser perdeyên sînemayê ku bala civaka giştî bo aliyê xwe rakişand.

# Ev tîp ji bo ker û lalan afirîne




Ev tîp bi hin livandinên dest û tiliyan dikarin mirovên ker û lal bidin famkirin.

Ji bo jiyana kesên kêm-endam jî êdî çareserî heye. Ker û Lalên ku li seranserî cîhanê dijîn ji van livandinan ji hev têdighêjin û êdî pisgirêka zimanî namîne. Xwedan kesî kêm-endam neke, lê bû jî divê mirov bijî û wek kesên normal rola xwe di jiyanê de bilîzin û ji jiyanê jî xweşiyê werbigre. Mala wan kesan ava be, ku ev tîpên bi livan afirandine û di kesên kêm-endam de ramiyane.

**Avestakurd**

## Ji bo bîranîna serhildana Rojavayê Kurdistanê



Mizgîn Hesko

Ji buharê ta buharê
Çend binefş bişkivîn....?
Çend nêrgiz çilmisîn....?
Çend gelawêj çirisîn...?
Çend barbang
fetisîn....?
Ji Helabça ta Qamişlo
Çend aheng
Çend Festîvalên jiyanê
Têne li darxistin....?
Ji cejnên mirinê ta
cejnên jînê
Çend Leyla
Çend Agîd
Çend Samî
Çend Ciwan
çend Qasimlo
Ji dayik Dibin....?
Çend Pêxemberên nuh
Çend Zaradeştên kal
Avistayê didomînin.......?
buharê ta buharê
Çend Barzanên nuh
Ji biskên hetaw
têne der.....?
Çend Qadî
Di zikê Mihabadê de
Bûne çira û fener
Çend Şêx Sehîdên nuh
Ji mizgeftan
Ji hicrikên bi ocax
Vedan kesser
Çend Maşûqên nuh
Dijîn bi hêrs
Bo qada sor û zer
Ji adarê ta adarê
Çend Anahîta
Çend Yezdanên dilbijok
Têne xapandin
Çend Şaxoşînên nuh
Têne perçiqandin
Ji serê salê ta binê salê
Çend bêrîkirin
Dikevin bin pêlavên
biyaniyê de
Çend firmêsk
Di qermîçokên riwên
zuhade
Têne veşartin
Nesrînê ta M. Şêxo
Çend Şeydayên nuh
Distirînin ji bo
Dilberê.......?
Çend zeryên nuh
Dinerin ji pencerê.....?
Ji Cegerxwîn ta Tîrêj
Çend helbestvanên
nuh
Dest tavêjin
kemberê..-....?
Ji Isqa Nîşanî ta evîna
Feqhê gerhok
Çend Bêkesên nuh
Hildigrin pênûs û
fenerê......?
Çend Agirdadên nuh
Vêdixin luksa
berê.......?
Ji Orkêş ta Qamişlo
Çend Pakrewan
Ji pêsîra goristanan
Ber bi asîman ve
hilperikîn
Çend Agirdadên nuh
Ji xuncên gulan
herikîn....?
Dê tu Agirdadbî
Dê 12 adarê jî
cejnbî........!
Ji buharê ta buharê
Dê tu Agirdadbî
Samana Newroza mebî
Dê tu arama çavên ku
di bendamanêde
Melûl,.....melûl
Şilo pilo Dibin
û dîse bi omîdên dîtinê
avis dibin
Ji adarê ta adarê
Çendîn mahîtab
rawistandin
Çendîn afîtab di binê
awrande nixumandin
Dê tu Agirdadbî
Dê tu ronî bikî xewnên
me
Dê tu germ bikî dilkê
dilê me
Dê tu Agirdadbî
keftelefta Mendalekî
Ku ji nuh, îro ji dayik
dibe
Dê tu hilm û bîna
Rîhaneke
di nav kavilên wêrande
Hewl didî ku serî rake
Dê tu bejna findeke
Ku ji nuhve tête
vêxistin
Dê tu Agirdadbî
Di şopên buhara me
de
Tu ne buyerî
Di hinavê dîroka me
de tu SERHILDANÎ

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com





## Li ser halê xwe de dilê wî bo Kurdan dişewite!

### Qezafî: pêwîst e herêma dijî firîn bo parastina Kurdan li Turkiyê bihê danîn ne bo Lîbiyê



Muimer Qezafî, Serokkomarê Lîbya di hevpeyvînekê de ligel kenala "TRT Turk" ragihand ku pêwîste welatên zilhêz ên Rojavayê biryara çêkirina herêma dijî firînê li Bakûrê Kurdistanê li Turkiye bidin, ne li Lîbiya, çimku çendîn sal e balafirên serbazî ên Turkî Kurdên wê parçeya Kurdistanê bumbebaran dikin. Bi vî awayî bo carek din jî Qezafî pirsa Kurd xiste ber çavên medyaya cîhanî.

Turkiye yek ji wan welatan e ku ragihandiye dijî desttêwerdana serbazî a dewletên cîhanê li Lîbyayê ye, lê serbarî ku desthilata Qezafî ketiye metirsiya jinavçûnê, navbirî rexne li êrîşên dewleta Turkiyê bo ser Kurdan û bêdengiya dewletên cîhanê girt. hêjayî gotinê ye ku civata Ewlekar a NY hêla dijî firîn li dijî lîbiyê pesend kir. Herçend ku hikûmeta Lîbiyê agirbend ragihand, lê çend welatên zilhêz ên cîhanê bihevre êrîş kirin ser dam û dezgehên wê hikûmetê. Ew rexneya Qezafî ne cara yekê ye, jiberku sala 1986'an di dema seredana Necmedîn Erbekan Serokwezîrê wê demê yê Turkiyê de, Qezafî bi eşkere rexne li siyaseta Turkiyê li hember Kurd de girt û ragihan ku pêwîste Turkiye rê bide Kurdan ku dewletek xweser li Başûra Rojavaya Turkiyê "Kurdistana Bakûr" dabimezrînin.

## Pêtir ji 20 hezar kuştî di bûyerên

### îsal ên hat û çûnê li Îranê



Herçend xweneparastina ajotvanan ji axaftin bi hevalên xwe re, telefon, leza zaf, girênedana qayîşa şifêriyê û..., beşek ji sedemên rûdana bûyerên hat û çûnê, lê heya niha jî li welatê Îranê de xizmetek pêwîst ji bo hevwelatiyan nehatiye kirin û girîngî bi rê û piran nehatiye dan. Lewma di rewşek weha de, hejmara kuştiyên bûyerên hat û çûnê ên îsal gihîşte 20 hezar kesî. Hêjayî gotinê ye ku Serokê Polîsê hat û çûnê yê Îranê, tev sedemên bûyerên hat û çûnê xistine stûyê şifêran. Îran her sal goriyên zêde di vê biyavê de dide, û hejmara goriyên hat û çûnê li Îranê gelek zêdetir ji welatên li halê şer de ne..

## Piştî derbasbûna 8 rojan bi ser sonamiya

### Japonê de, bi zindî hat derxistin



Piştî 8' rojan li ser sonamiya Japonê, tîmên rizgarkirinê karîn ciwanekê di bin paşmayên erdhejê de peyda bikin û wî bi nexweşxanê re veguhêzin. Ewa di halekê de ye ku bi berçavgirtina befrbarînê di vî bajarî de tu hêviyek ji bo zindîmana kesên han nebû. Sonamiya Japonê heya niha 7200 kes ji nav birine û hejmara wundabûyan jî nêzîk 11000 kesî tê texmînkirin. Herweha sonamiya Japonê, jiyana çend Milyon kesan di bakûra rojhilata Japonê de aloz kirye û çend sed hezar kes jî xanî û mal û malên xwe ji dest dane. Herweha di wê bûyerê de riaktorên navenda navikî a Fokoşîmayê bi dijwarî tûşî xirabiyê bûne.

## Parlamentoya Îraqê komkujiya

### Helebçe weke Jenosîd qebûl kir



Parlamentoya Iraqê, komkujiya Helebçe ku di sala 1988 de ji aliyê rêjîma Sedam ve pêk hatibû, weke Jenosîd qebûl kir.

Parlamentoyê di 44'mîn rûniştina xwe de Komkujiya ku li Helebçe çêbûbû û têde zêdetirî pênc hezar kes hatibûn şehîdkirin, û bi hezaran jî birîndar bibûn û gelek kêmendam mabûn, weke jenosîd nasand.

Eve jî bûye cihê dilxweşiya kurdan û bi taybetî xelkê Helebçê, çunku heya niha bi fermî îtiraf bi vê cinayetê nehatibû kirin

## Pileyên Komara Îslamî piştî 30 salan

### deshilatdariyê li biyavên cur bi cur de

Xwekujiya jinan: Pileya sêyem a Cîhanê.
Îdam: Pileya Duyem a Cîhanê piştî Çînê û pêka xulyaqet pileya yekem.
Koçberbûn û helatina bijardeyan: Li nav 91 welatan de pileya yekem.
Welatê herî metirsîdar ji bo weblagnivîsan: Pileya sêyem a cîhanê.
Azadiya ragihandinê: Pileya 172 ji 175




welatan.
Fesada dewletî: pileya 168.
Erziş û girîngiya Pasporta Îranî: li refa herî dawîn a rêzbendê.
Li dabînkirin û misoger kirina saxlemiya xelkê: pileya 123.
Helawsan "tewerom": Pileya 219 li nava 225 welatan de.
Li rakişandin û balkişandina ticarî de: Li dawiya rêzbendê de pileya duyem.
Para jinan li birêveberiyê de: Pileya 101 li nav 120 welatan de.
Derfetên karî: Pileya 144 li cîhanê de.
Lezatiya Înternetê: Pileya 186 a cîhanê.
Azadiya ragihandinan: Pileya 172 li nav 176 welatan de.
Pareyê Îranê "Riyal": Sêyemîn diravê bêerziş ê cîhanê.
Li dawiyê de jî, çepikek qahîm Bo Komara cinayet û hov a Îslamî a Îranê.

## Navê Ayetulla Xamineyî li

### refa 15 dîktatorên cîhanê de

Belavoka "Bîzîns Însaydir" di ragihandinekê de navên 15 kes ji dîktatorên ku pêtirîn temenê rêberiyê hene, belav kir.

Navê Xamneyî, rêberê Komara Îslamî li refa navên Muimer Qezafî Serokkomarê Lîbiyê, Husnî Mubarek Serokkomarê berê yê Misrê, Nezer Bayuf Serokkomarê Qezaqistanê,



Mogabe Serokê Zîmbawe û Umer Elbeşîr Serokê Sûdanê û hejmarek din ên dîktatorên cîhanê hatiye.

Hêjayî gotinê ye ku Husnî Mubarek û Zenilabidîn Bin Elî di wan dawiyane de ji desthilatê hatin dûrxistin.